# Bala cîhanê li Hewlêrê ye



Piştî êrîşa DAIŞ'ê ya li ser Mûsilê ku pê re otorîteya navendî ya Iraqê jî têk çû û rêveberiya Kurdistanê biryara referandûma serxwebûne da û di vê navberê de jî biryara firotina neftê ya li bazara cîhanê û êrîşa DAIŞ'ê ya Şengalê qewimî, li heremê her tişt tevlihev bû. Bi êrîşên DAIŞ'ê yên li dijî Şengalê, koçkirinên girseyî pêk hatin, isevî û êzidî ji cihên xwe hatin derxistin. Ew hemû pêkhatin bûn sedem ku hemû cîhan ji nişke ve berê xwe bide Kurdistanê. Ji tîrmeha borî virve ku êrîşên DAIŞ'ê berdewam in, dewletên girîng yên cîhanê têkilî bi Hukumeta Kurdistanê re danîn û gelek serokwezîr û wêzîrên karên derve yên van dewletan serdana paytext Hewlerê kirin.

Piştî ziyareta Wezîrê Karên Derve yê Emerîqa John Kerry ya di 24'ê hezîranê de gelek şande û wezîr, fermandar, saloxdar, serokwezîr, berpirsên saziyên alîkariyê û diplomat hatin Kurdistanê. Çûn û hatina şande û rayedarên dewletên cîhanê hîn jî didome. Rûpel 04

BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar:17 23-29 Tebax 2014 basnews.com

## Sebahattin Yıldız



Di muzîkê de tehm û rengên kurdî dive R16

### Qasim Simêl li gel Mesrûr Barzanî civiya:

## Emê Şengalê rizgar bikin!

Fermandarê Pêşmergeyên Berxwedana Ezdiyan Qasim Şeşo Simêl da zanîn ku di çend rojên dawî de çekên sivik gihîştiye wan û wê di demeke nêzîk de Şengalê rizgar bikin.

Qasim Simêl ji BasNûçe re ragihand ku wan bi Rawêjkarê Asayîşa Giştî ya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî re hevdîtinek pêk anîne û piştî vê hevdîtinê Barzanî ji wan re çekên sivik û cebirxane şandiye û gotiye ku wê di çend rojên pêş de ji wan re çekên giran jî bişinin. Simêl li ser Şengalê jî angaşt ku di demeke nêz de wê Şengalê rizgar bikin û koçberên ezdî wê bikaribin vegerin malên xwe.

Qasim Simêl got hevdîtina wan a li gel Mesrûr Barzanî gellek erênî derbas bûye. Simêl wiha axivî: "Di hevdîtinê de em li ser dagirkirina Şengalê rawestiyan û me gellek babetên girîng zelal kir. Her wiha wê ji bo me alîkariyên din jî bêne kirin. Piştî demekê emê mizgîniya rizgarkirina Şengalê ragihînin."

Qasim Simêl diyarkir kû di rojên dawî de bi hevkariya hêzên esmanî yên Emerîqa (DYA) û hêzên pêşmerge, bi êrîşên hewayî û bejayî li Zûmar û Şengalê derbeyên giran li DAIŞ'ê xistine û ragihand ku hêzên DAIŞ'ê yên li Zûmar û Şengalê li ber têkçûnê ne û vê rewşê karê wan hêsantir kiriye.

### Hejmara koçberan gihîşt 2 milyonan

# Ezdî li Kurdistanê belav dibin



Piştî êrîşên DAIŞ'ê yên li dijî Herêma Kurdistanê û komkujiyên li Şengalê deh hezeran kes ji warên xwe reviyan û li Kurdistanê belavbûn. Hejmara penaberên ku beriya vê li Sûriye û Iraqê ji ber DAIŞ'ê reviyabûn û xwe gihandibûn Kurdistanê, piştî êrîşa Şengalê gihîşt asteke pir zêde.

Di encama êrîşên DAIŞ'ê de bi sed hezaran welatiyên Sûriye, Iraq û êzidiyên Kurdistanî berê xwe dan Zaxo, Hewlêr, Duhok û Kerkûkê. Hejmara penaberên li Kurdistanê ji du milyonan derbas bû. Hukumeta Kurdistanê ewlehiya wan diparêze, lê ji ber ku derfet têrî nakin penaber di nava şert û mercên xirab de ne. Rûpel 02-03

## PKK ji çiyê dadikeve?

Naveroka plana pêvajoya çareseriyê aşkere dibe. Li gor planê di demek nêz de vegera gerîlla dikeve rojevê. Rûpel 05

### Asoya çareseriyê

Dîsa xwîn rijiya R07





## Qamp ewle ne lê pirsgirêk pir in

Bi êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Şengal û gelek deverên din yên Kurdistan, Sûriye û Iraqê re bi sed hezaran kes ketin rêyên koçberiyê. Ji ber ku li Rojhilata Navîn bo koçberan cihê herî bi ewle Kurdistan bû, zêdetirî milyonek pênaber li qampan hatin bicîhkirin. Lê li qampan koçber di şert û mercên xirab de û bi xetera nexweşiyan re dijîn.

# Kurdistan bû stargeha penaberan

Bi hezaran Ezdiyên ku piştî êrîşa DAIŞ'ê ya Şengalê ji bêçarî ji warê xwe koç kirin niha jî li kampan mexdûr in. Ezdiyên ku ji ber DAIŞ'ê reviyan û xwe spartin çiyan û bi rojan tî û birçî man, bi saya mudaxeleya hêzên kurd, ji çiyayan hatin daxistin û arasteyî kamp û wargehên bi ewle bûn. Lê herçiqas ku kamp bi ewlebin jî vê carê ezdiyên penaber bi pirsgirêkên jiyanî re rû bi rû ne.

Ezdiyên ku ji ber êrîşên DAIŞ'ê revîn û koçî Zaxo'yê kirin di nav şert û mercên pir dijwar de hewl didin ku jiyana xwe bidomînin. Ev koçberên ezdi yên ku li dibistan, mizgeft û avahiyên nedûtî de kom bûne dixwazin derbasî Tirkiye bibin û derbasî welatên rojava bibin. Hin malbatên ku li ber Deriye Xebûrê li park û bexçeyan kom bûne jî hewl didin ku bi ser Tirkiye ve biçin cem xizmên xwe yên Ewropa.

**Hejmara Koçberan li Başûr ji milyon û 250 hezarî zêdetir e**

Wezîrê Koçberiyê yê Iraqê Dîndar Doskî di derbarê koçberan de da zanîn ku hejmara koçberên li Kurdistanê ji milyon û 250 hezarî derbas bûye. Di konferansa ku bi babeta alîkariya koçberan a li Hewlêrê hate lidarxistin de Doskî ew agahî dan raya giştî: Hejmara koçberên li hemû Iraqê niha ji milyon û 250 hezarî bêtir e. Piraniya van koçberan koçî Herêma Kurdistanê kirine. Armanca me ew e ku em ji hemû kesên ku koç kirine re bibin alîkar, lê li pêş me gellek astengî hene.'

**Hejmara êzdiyên li Midyadê nêzîkî 2000'an bû**

Rêveberiya Miduriyeta Rewşên Lezgîn a Serokwezîrtiyê ya Tirkiye (AFAD), ji bo 1750 êzdiyên ku koçî Midyadê kirine, konbajarek avakir. Koçberên ezdi yên ku qeydên wan têne kirin û di kontrola tendurustiyê re derbas dibin, li vir têne bicîhkirin. Di derbarê mijarê de Qeymeqamê Midyadê Oguzhan Bîngol da zanîn ku ji bo hewandina koçberan xebatên wan didomin û heta ev konbajar tije bibe ewê koçberan tê de bi cih bikin.

**Li Silopya 2000 koçber**

Silopiya, ji ber ku li ser rêya deriyê Xebûrê ye gelek kesan koçî vê navçeyê jî kirin. Berdevkê Kampanyaya Alîkariya Koçberan Nesîm Orûç ji BasNûçe'yê re ragihand ku ji bilî koçberên ku ji alî gele Silopiya ve weke mêvan li malen xwe dihewînin nêzîkî 2000 koçberên êzidî hatine Silopya.

**Li Amedê 1100 koçber hene**

Midûrê Beşa Xizmetên Civakî ya Şaredariya Amedê Abdulrehman Karakoyun di derbarê koçberên êzidî yên ku koçî Amedê kirine de ev agahî bi me re parvekir: Li Amedê nêzîkî 1100 koçberên êzidî hene. Pêdiviyên van koçberan ên wek hewandin, tendurustî, cil û berg û xwarin û vexwarinê di çarçoveya kampanyaya alîkariyê ya ku ji alî Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) û hemû şaredariyên ku girêdayî KCD' êne hatibû destpêkirin berhev dibe. Nêzîkî 500 koçber li Sumerparkê di du avahiyan de têne hewandin. 230 koçber li avahiyên ku Şaredariya Baglarê terxan kiriye, 200 koçber li avahiyên ku Şaredariya Kayapinarê terxan kiriye û yên mayî jî li avahiyên ku Odeya Bazirganiyê ya Amedê terxan kiriye têne hewandin. Pêdiviyên wan ên xwarin û vexwarin, tendurustî û cih û bergan jî ji alî şaredarî, dezgehên sivîl û gele amedê ve têne bi cihanîn.

**NY ji bo Kurdistanê alarma koçberan da**

Cîgirê Berdevkê Serokê Karên Derve yê Herêma Kurdistanê û Serokê Lijneya Berpirsyariya Penaberan Dîndar Zebarî jî da zanîn ku li Herêma Kurdistanê di sala 2012'an de, piştî şerê Sûriye hejmara penaberan zêde bûye û ji Rojava û bajarên din ên Sûriye 120 hezar kes hatine Herêma Kurdistanê. Zebarî bi bîr xist ku ji jo penaberên Rojava li Duhok, Hewlêr û Silêmaniye qamp hatine avakirin.

Zabarî got ku Neteweyên Yekgirtî (NY) rewşa li Herêma Kurdistanê di asta sêyemîn, ku asta herî xeter e, bi nav dike. Zebarî wiha pê de çû, "Li gor ku NY koçkirin û penaberiyê li sê astan dabeş dike û asta sêyem asta mexdûrên şer e ku divê bi lezgînî alîkariya wan bê kirin. Di asta sêyem de NY bi lezgînî dikeve nav hewldanên alîkariyê. Di vê rewşê de li Başûrê Sûdanê, Navenda Afrîkayê, Sûriye û li Iraqê penaber hene. Herêma Kurdistanê jî di nav Iraqê de tê binavkirin. Komîseriya Bilind a Penaberan a NY ji bo ku bi rêvaberiya Herêma Kurdistanê re bi hevsengî bixebite biryar daye ku were li Hewlêrê bixebite."

Zebarî di axaftina xwe de bal kişand ser van xalan:

*Alîkariyên ku heya niha hatine şandin mixabin tenê têra ji sedî 5'ê koçberan dike. Em hewl didin ku van alîkariyan jî bigihînin kesên ku rewşa wan di xeteriyê de ne. Butçeya Herêma Kurdistanê têra hemû koçberan nake. Wekî ku tê zanîn hukumeta Iraqê jî butceya Kurdistanê birî ye. Di vê mijarê de pirsgirêk hene.

*Rêveberiya Bexda'yê nêzîkî pênc salan e alîkariyê nade Herêma Kurdistanê. Di vê karêsata dawî de jî rêve-



beriya Bexda'yê tu alîkarî neşandî ye. Alîkariya ku şandiye jî alîkariyeke pir kêm e. Rêveberiya Navendî ya Iraqê erka xwe ya resen bi cih nîn e.

*Jixwe NY ji bo koçberên herêmê rewşa awarte ragihandiye, ji bo wê rewşê jî binavkirina "karêsata mirovahî" di cîh de ye.

*Li gor daneyên NY li Kurdistanê milyon 200 hezar kes ji cih û warê xwe bûne. Lê li gor daneyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê (HHK) hejmara penaberan ji milyon û nîvekê derbas bûye û gihîştiye 2 milyonan. Tenê di serê tebaxê de ji êzdiyên kurd ên Şengalê 400 hezar kes derbasî Duhokê bûye. Ne derfetên Duhokê ne jî hêza HHK dikare evçend koçber bihewîne.

*Alîkarî bi du awayan bû. Ya yekem alîkariyên DYA û Îngilîstanê ne. Ev alîkariya bêyî destûra Rêveberiya Bexda'yê hat û raste rast gihîşt kesên ku li Çiyayê Şengalê asê mabûn. Ya duyem hin pakêtên alîkariyê yên ku gihîştin Frokexaneya Navneteweyî ya Hewlêrê bû. Frensa wek du beşan bi tevayî 38 ton tiştê xwarinê şand. Meha berê Katarê 30 ton melzemeyê xwarinê şand. Di sê mehên dawî de Tirkiye 100 tirêle melzemeyên alîkariyê şand. Dîsa Emaretên Yekbûyî yên Ereb (EYE) û Almanya alîkarî şandin. Hemû alîkarî li kampên penaberan ên li Duhok, Kerkûk, Hewlêr û Silêmaniyê hatene belavkirin.

*Ji bilî Katar û EYE tu dewletek ereban alîkarî nekirin. Ne tenê ji





bo ezdiyan ji bo tirkmen, mesîhî û erebên li Herêma Kurdistanê jî tu alîkarî nekirin. Helbet ev cîhê fikarê ye û bedbextî ye. Li hember vê rewşê bêdeng man.

*Bi terorê re û bi taybetî bi DAİŞ'ê re tekoşîn ne tenê pirsgirêka Kurdistanê ye. Ev teror ewlekariya hemû dinyayê dixe xeteriyê. Ji ber vê yekê alîkariya leşkerî û aborî ya hêzên navneteweyî ya ji bo Kurdistanê pir girîng e.

Hewldanên DAİŞ'ê li hember ezdî û mesîhiyan jenosîd e. Hewldanên li hember gelan sûcên mirovahiyê ne. Ji bo ku van gefan ji holê rabin hewcedarî bi konseptek hevpar û berfireh heye. Ji ber ve yeke êrîşên hewayî yên DYA girîng in û divê heya ev xeterî ji holê rabe ev êrîş berdewam bikin. Li gel alîkariyê her wiha ewlehiya koçberên li Herêma Kurdistanê jî girîng e. Ji ber vê yeke em dixwazin ku Konseya Ewlehiyê ya NY ji bo tekoşîna li dij DAİŞ'ê biryar bide û di nav hewldanan da be.

**Bêyî qampan gelek pênaber jî li mizgeft, dibistan û avahiyên înşaatan de têne hewandin. Gelek ezdî di nava hewildana ku werin Tirkiye û pişt re xwe bigîhîjin Ewropa de ne.**

Em ji Barzanî, PKK, YPG û hemû dinyayê daxwazin; Li gelê Şengalê xwedî derkevin. Gelê Şengalê niha li pir deran koçber û penaber in.

## Viyan Daxîl:
# Alîkariya gelê me bikin

Cesim İlhan-Hatice Özhan

Parlementera ezdi Viyan Daxil Komkujiya DAİŞ'ê ya li Şengalê di nav hêsrên xwe de şanî dinyayê da û ji bo erka xwe bi cih bîne bang li parlemana Iraqê kir. Viyan Daxil, di firokeyeke ku alîkarî dibir Şengalê û ket de birîndar bûbû. Daxîl ji bo dermankirinê li Stenbolê di nexweşxaneyeke de 6 rojan ma û li wir dîtin û ramanên xwe BasNûçê re vekir.

### Komkujiya mezin ya DAİŞ'ê li Şengalê bû

Daxil got ku êrîşa DAİŞ'ê ya li ser Şengalê ne wek êrîşên berê bû û got: 'Êrîşa DAİŞ'ê ji êrîşa bajarê Selehadîn û Telleferê deh caran mezintir bû. DAIŞ'ê, zarok û mêrên me kuştin, jinên me revandin û gelê Şengalê perîşan kir. Niha li Şengalê tu kes nemaye. Li Çiyayê Şengalê deh rojan tî û birçî man û piraniya wan mirin. Şêniyên Gundê Koço ji ber ku nereviyan hemû zilam û zarok kuştin û 200 jin jî revandin."

### Pêşmerge û gelê Şengalê li gel hev şer kirin

Daxil got ku li Şengalê Pêşmerge û gel bi hev re şer kirine, lê cebirxaneya wan têrî nekiriy û axaftina xwe wiha dmand, "Pêşmerge û gelê Şengalê bi hev re şer kirin, DAIŞ di rêyek stratejîk re kete Şengalê. Cebirxaneya Pêşmerge qediya û ji ber ku alîkarî negîşt wan ji bêçarî paş de vekşiyan. DAIŞ'ê bi hêzek mezin êrîşî Pêşmergeyan kir.'

### Em êdî naxwazin li Şengalê bijîn

Daxil xwest ku hemû dinya li hember êrîşan alîkariya wan bikin û wiha



got, "Xwesteka me ne tenê ji serok Barzanî. Ji PKK, YPG û ji hemû dinyayê ye. Gelê Şengalê niha li Duhok, Hewlêr û Zaxo'yê koçber e. Em dixwazin hemû dewlet û Tirkiye jî alîkariya me bikin. Divê bi lezgînî kamp bêne avakirin û pêdiviyên mirovî bi cîh bên. Gelê me yê ku di çiyayê Şengalê de asê maye bi ewlehî bê rizgarkirin. Em van tiştan dixwazin."

Daxil bal kişand ser van tiştan: Bi taybetî gundên ereban jî êrîş kirin. Hin kurdên girêdayî DAIŞ'ê jî êrîşî wan kirine. Ger ku DAIŞ ji Şengalê derkeve jî ewê êzdi ne bi ewlebin. Em êdî naxwazin li Şengalê bijîn, divê cîhekî ewle ji me re bibînin. Em naxwazin ji du-sê salan carekê rastî fermanekê bibin. Em dixwazin derbasî dewletên Ewropa bibin. Piştî du mehan zivistan tê û ger ku çarenûsek neyê peydakirin wê gelê me perîşan bibe. Divê bi lezgînî Herêma Kurdistanê alîkarişa êzdiyan bike.

Divê hemû partiyên kurdan bi lezgînî bibin yek. Ger kurd bibin yek wê bibin hêzek mezin û DAIŞ û dewletên neyar nikarin li ber wan bisekinin.

Du roj beriya ew axaftina min a li parlementa Iraqê Şengal hatibû dagirkirin, ji gelê me pir kes hatibûn kuştin, zarokên me ji tînan dimirin û hemû êş û azarên gelê me di dilê min de kom bûbûn. Ez jî derketim û min tercûmaniya êşa gelê xwe kir. Min xwest ez bidim zanîn ka çiqas birîndar û dil bi kul in. Yanî beyaneke wisa derket çimku rojên pir xedar bûn û ew peyama min bandorê li ser hemû cîhanê kir.

# Bala cîhanê li Hewlêrê ye

Piştî êrîşa DAİŞ'ê ya li ser Mûsilê ku pê re otorîteya navendî ya Iraqê jî têk çû û rêveberiya Kurdistanê biryara referandûma serxwebûne da û di vê navberê de jî biryara firotina neftê ya li bazara cîhanê û êrîşa DAİŞ'ê ya Şengalê qewimî, li heremê her tişt tevlihev bû. Bi êrîşên DAİŞ'ê yên li dijî Şengalê, koçkirinên girseyî pêk hatin, îsevî û êzidî ji cihên xwe hatin derxistin. Ew hemû pêkhatin bûn sedem ku hemû cîhan ji nişke ve berê xwe bide Kurdistanê. Ji tîrmeha borî virve ku êrîşên DAİŞ'ê berdewam in, dewletên girîng yên cîhanê têkilî bi Hukumeta Kurdistanê re danîn û gelek serokwezîr û wêzîrên karên derve yên van dewletan serdana paytext Hewlerê kirin.

Ji ber ku piştî hilbijartina sala çûyî hikûmeteke bi rêkûpêk ku dikare hemû aliyên Iraqê temsîl bike nehate damezirandin û sunneyan di bin serkêşiya DAİŞ'ê de dest bi bidestxistina axa Iraqê kirin Rêveberiya Navendî ya Iraqê ket xeteriya perçebûnê. Di serî de DYA û welatên herêmê ji bo rejîma Bexdayê têk neçe çûn û hatinên xwe yên Hewlêrê zêde kirin û ji kurdan alîkarî dixwestin. Çûn û hatinên dîplomatîk bi serlêdana Wezîrê Derve yê DYA John Kerry destpêkir û bi erîşên DAİŞ'ê re ji dewletên cihê fermandarên payebilind, berpirsên dîplomatîk, berpirsên sixûriyê, peywirdarên alîkariyê, wezîr, serokwezîr û bi dehan kesayetên navdar ên navnetewî serlêdana Hewlêrê kirin û çûn û hatinên bi vî rengî hê jî berdewam in.


Serokê NY'ê Ban Ki-Moon li gel Mesûd Barzanî

Di van serlêdanan de diyar dibe ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesud Barzanî di babetên dahatiya Iraq, Sûriye û pirsgirêka DAİŞ'ê de aktorê sereke ye û wê çûnûhatinên dîplomatîk ên bi Hewlêrê re di rojên pêş de jî bidomin.

Her wiha çavdêrên siyasî diyar dikin ku dahatiya Iraqê, pirsgirêka DAİŞ û şerê li Sûriyeyê berdewam be wê Hewlêr hin grîngtir bibe û bibe navenda çûn û hatinên dîplomatîk. Çavdêrên siyasî bal dikêşînin ser vê grîngiya Hewlêr ê û didin zanîn ku dibe ku Hewlêr bibe navendek girîng a biryardayînên siyasî. Her wiha didin zanîn ku di biryarên li ser herêmê de êdî kurd jî rolên grîng digrin. Ger ku Almanya'ya ku di derbarê şandina çekên şer de pir hesas e biryara li hember DAİŞ'ê ji kurdan re şandina çekan dabe ev nîşana serkeftina siyaseta kurdan e.

# Herêma Kurdistanê û pirsa ragihandinê

Hoşeng Osê

Dibe ku di sala 1988'an de, dema komkujiya Helebçeyê rû da, di warê nebûna ragihandineke birêkûpêk, aktif, resen û profesyonel ku vê komkujiyê bi raya giştî ya cîhanê bide naskirin û bihêle doza kurd hin deskeftên siyasî berbiçav bi dest bixe, bihaneya kurdan hebû. Lewra wêneyên despêkê yên komkujiya Helebçeyê ku cîhanê hejandin, ne ji ragihandina kurd derketin, lê belê ji kamereya wênekêşekî rojnameyên tirkî, bi navê Ramazan Öztürk derketin. Her wisa komkujiyên "Enfalê" bi vî rengî derbas bûn. Ji sala 2003'an û ta niha û li gorî pere û budçeyên ji bo ragihandinê ji aliyê rêvebiriya Herêma Kurdistanê tê veqetandin û terxan kirin, bihaneyên nebûna ragihandineke kurdî xwedî rol û bandoreke cîhanî, nînin!

Ta niha, kesek nizane; bê çiqas pere ji bo ragihandina Başûrê Kurdistanê tên terxankirin û xerc kirin! Ta niha kesek napirse; Çima kanaleke TV a kurdan, taybet bi zimanê îngilîzî û frensî, wek hemû welatên herêmê û cîhanê, tuneye? Rast e, hin berş û bultenên bi zimanê îngilîzî yên hin kanal û rojname û ajansên nûçeyan yên Herêma Kurdistanê hene, lê ev yek têr dike? Gelo kîjan kenal, ajans û rojnameyên Kurdistanê bûne jêderên sereke bo hemû saziyên ragihandinê û ajansên nûçeyan yên cîhanî, mîna Reuters, AFP û Associated Press derbarê şopandina bûyerên Herêma Kurdistanê?



Komkujiya ku rêxistina DAİŞ'ê li herêma Şengalê kir, ne ya yekemin e ku bi ser kurdan pêkhatiye û dibe ku ne ya dawîn be jî. Ji bilî kêmasî û şaşiyên ku hêzên Pêşmerge di vê derbarê de kirin, hin şaşîtî û lawaziyên din derketin holê, dane diyarkirin ku pirsa ragihandinê ya Herêma Kurdistanê, li ser asta navnetwayî, valahiyeke mezin dijî. Ragihandina Kurdistanê ya fermî û nîvfermî û serbixwe, tenê bînerên kurd ji xwe re kirin armanc. Di vî warî de jî gelek kêmasî derketin holê. Lê li gorî nerîna min, Herêma Kurdistanê, van ziyan û wendahî û qurbaniyên mezin ku li Şengalê çêbûn, dikarîbû li ser asta navnetwî, ji bo doza Şengalê û ezdiyan bi taybet, û ji bo doza Kurdistanê bi giştî, deskeftên siyasî yên mezin bi dest xistibana, eger "çeka" ragihandinê bi şêweyeke zanistî û aktîf bi kar baniya. Herêma Kurdistanê dikarîbû, ragihandinê bike hêzeke xurt û bi bandor ji bo dîplomasiya Kurd! Lê mixabin, ev yek nebû! Çima nebû, û kengê wê bibe û ev valahî dê bê dagirtin. Pirs ew e!

Li gorî nerîna min, gerek rêvebiriya Kurdistanê, derbarê komkujiya Şengalê, maseya krîze ya diplomasî û ragihandina navnetewî saz kiriba, ji ber ku giringî û pêwistiyên vê buyerê û pêvajoyê, ne tenê şikandin û têkbirina DAİŞ'ê û alîkariya mirovahî a Şengaliyan bûn. Ango, ne tenê pêkanîna serkftinên leşkerî bûn. Lê di warê şerê siyasî û diplomasi de, pêwistî bi nexşerêyeke û pilaneke berfireh û xurt û zanistî heye û dê tim hebe.

Tirk, ereb, faris û cihû, pirsa ragihandinê ji mijarên siyasî, diplomasî, çand û hunerê ta di aborî û turîzmê, ev pirs çareser kirine. Lê mixabin, hîn jî kurd di gerîneka ragihandina partîzanî de ne û negihîştine asta ragihandineke netewî ku xwedî rol û cih û bandor be!



## Naveroka plana pêvajoya çareseriyê eşkere dibe

# PKK wê ji çiyê dakeve?

Kiteyên plana Hikûmeta AKP'ê ya pêvajoya çareseriyê diyar bû. Di planê de xala pêşîn daketina gerîlla ya ji çiya ye. Li gor vê daketina gerîlla ya ku wê di payizê de destpêbike, heta sala 2015'an dom bike.

Wek tê zanîn danûstandinên ji bo çareseriya pirsgirêka Kurdistanê di navbera Serokê PKK Abdullah Öcalan û rêvebirên MÎT'ê de destpêbûbûn û piştre bi heyetên siyasî dewam kiribûn. Beriya demekê hevdîtinên raste rast di navbera hukumet û Ocalan û Qendîlê de jî ketin rojeva Tirkiye. Li gor vê beriya demekê planeke ku ji 6 bendan pêk tê hate amadekirin û li parlementoyê hate pesendkirin. Li gor planê ji bo ku gerîlla ji çiyê dakeve, rê li ber siyaseta kurdan bê vekirin û pirsgiriêk bi temamî bê çareserkirin hin biryar hatin girtin. Cara yekem hukumetê li ser daxwaza Serokwezîr Erdoğan ji bo çareseriya pirsgirêkê demek diyarkir û li gor vê xebat dan destpêkirin.

Nexşerê ya ku ji 291 rûpelî pêk tê û wek 'Di pêvajoya çareseriyê de Modêla Tirkiye' tê bi navkirin, piştî amadekariyên binesaziya hiqûqî wê pêkan bike ku kadro û rêvebirên PKK/KCK'ê yên li Mexmûr û Ewropa li gor pîvanên plansaziyekê vegerin Tirkiye.

Li gor vê nexşerê ya ku ji 291 rûpelî pêk tê, ji bo pêvajo bibe xwedî zemînek yasayî, wê di bin banê Rawêjkariya Ewlehiya Raya Giştî de sekreteryayek bê damezirandin. Xebatên binesaziya yasayî yên ku wê vegeran pêkan bikin, heta dawiya îsal wê bêne amadekirin. Wê di Cotmehê de, bi anîna 21 malbatên ji Kampa Mexmûrê veger destpê bikin.

Di vê navberê de peyamên ku di demên dawî de ji aliyê Ocalan û endamên hukumetê ve tên dayîn jî xuya dike ku planek berfireh ku herdû aliyan li ser lihevkirine di rojevê de ye.

Piştî ku qanûna di derbarê "Bidawîkirina Terorê û Xurtkirina Yekgirtina Civakî" ya ku meha borî li parlementoyê hate pesendkirin, xebatên plana ku 47 rojan dom kiribûn bi dawî bûn. Li ser encamên mînakên 18 welatên ku bi pevçûnên etnîkî û neteweyî ve rû bi rû mane lêkolîn hatin kirin. Her wiha geşedanên dawî yên Rojhelata Navîn jî di çarçoveya planê de li ber çavan hatin girtin û Rapora 'Di Pêvajoya Çareseriyê de Modêla Tirkiye' hate amadekirin.

### Plana daxistina ji çiya

Li gor rojnamevan Çetîner Çetîn ku ji jêderên hukumetê agahiyan verdigire mixatabên mijarê îddia dikin ku nexşerê ya "Di Pêvajoya Çareseriyê de Modêla Tirkiye" wê hemû kurdên rojhelata navîn hembêz bike û ew wê di hişmendiya hemû kurdan de ferasetеke Tirkiyeke nû biafirîne.

Cîgirê Serokwezîr û Berpirsê Rêvebirina Pêvajoya Çareseriyê Beşîr Atalay di daxuyaniya xwe ya çend roj berê de dabû zanîn ku wê Rawêjkariya Ewlehiya Raya Giştî bi awayekî çalak bikeve dewrê û wê raste rast bi Qendîl û rêveberiya PKK'ê re hevdîtinan pêk bînin. Atalay di daxuyaniya xwe de da zanîn ku êdî bilî MÎT'ê ku berê pêvajoyê bi Serokê PKK'ê Abdulla Ocalan re birêve dibirin, ji bo birêvebirina pêvajoyê êdî wê Rawêjkariya Ewlehiya Raya Giştî jî bikeve dewrê. Bi wê daxuyaniya Beşîr Atalay pirsek wiha di serê şopgerên vê mijarê de der bibû; 'Gelo Rawêjkariya Ewlehiya Raya Giştî jî bi Ocalan re hevdîtinan dike yan na?'

### Maxmûr vala dibe

Ji 47 rojan vir ve, di xebatên diyarkirina bernameyê de gava herî girîng kampa Maxmûrê ye. Niştecîhên kampê piştî êrîşên DAÎŞ'ê, dev ji kampê berdan û derbasî Ranya ku nêzîkî Qendîlê ye bûn. Tirkiye mexdûriyeta gelê Maxmûrê girt ber çavan û di serê meha ilonê de vegera Maxmûriyan bi dawî dike. Bernameya ku niha diyar bûye di serê meha cotmehê de ye û di qefleya yekem de wê 21 malbat cîh bigirin.

### Kesên di Bultena Sor de ne li Hewlêrê dimînin

Wek tê zanîn di derheqê kesên ku di demên pêş de ji PKK veqetiyane û li Herêma Kurdsitanê bi cih bûne de Bultena Sor hatibû derxistin. 127 rêveberên payebilind ku hî li Qandîlê ne dê jiyana xwe li Hewlêrê bidomînin. Ji hêla din ve gerîllayên di merheleya duyem û sêyem de jî li gor planê vedigerin aliyê Rojava ku di bin kontirola PYD'yê de ye. Ji ber wî derbarê vegera merhela duyem û sêyem de agahî net nebûye.

### Rêya vegera kevnê gerîllayan jî vedibe

Bi destpêkirina vegerên meha kewçêrê re, rê li 3 hezar 971 kesên ji sala 1999'an de dest ji çekan berdane û li Duhok, Hewlêr û Silêmaniyê dijîn û hezar û 711 kesên qeyda wan tune ne jî rê vedibe.

### PKK'yiyên li Ewropa di dawiya salê de vedigerin

Li gor bernmeyê di rojên pêş de bi baskê PKK'ê yê Avrûpayê re wê hevdîtin pêk bê û bo bingeha vegera baskê rêxistinê ya Evropa tê çêkirin. Li Brûkselê bi hevdîtina fermî ya di meha kewçêrê re, di meha berfanbarê de bingeha vegerê dê bê amadekirin. Çavlirê ye ku 795 kesên ku li Evropa dimînin di meha berfanbarê de dest bi vegerê bikin.

Di merhaleya dawî de vegera PKK'yiyên li Qandîlê jî dikeve rojeva Tirkiye û ew jî dê destbi vegerê bikin. Dîsa li gor planê vegera 6 hezar 155 endamên PKK'ê wê merhale bi merhale pêk bê.



Roşan Lezgîn

# Ma rê rihê welatê Suomî lazım o



**Her milet eşkeno xo gore nê kitabî ra derse bigîro. Mi her wext meraq kerdêne ke nê tirkî xizmetê welat û miletê xo de senî motîve benê, çîyo ke înan hende konsantre keno çi yo. Ez nika bawer kena ke motîvasyonê milî yê tirkan de, bitaybetî kadroyanê kemalîstan de, rolê nê kitabî zaf xorîn o.**

**Kitabê Grigory Petrovî Yugoslavya û Bulgarîstanî ra vêşêr Tirkîya de eleqeyêko zaf pîl dîyo. Hende ke roşinvîr û brokratanê dewleta tirkan fikrê ke kitab de qisey benê, seba ke Tirkîya de bêrê tetbîqkerdiş, sey programê averşîyayîşî (kalkınma programı) qebul kerdê.**

Mi nameyê kitabê “Beyaz Zambaklar Ülkesinde” rewna ra eşnawitbi. La çend rojî verê cû ez nişta ro, mi yew nefes de wend. Werrekna mi rew biwendêne.

Nuştoxê kitabî Grigory Petrov rûs o, 1866 de Petersburg de ameyo dinya. Rûsya de akademîya îlahîyatî ra mezun bîyo. Dima çend mekteban de derse daya, ancî dêreyan de keşîşîye kerda. Gelêk kovar û rojnameyanê wextê xo de nuşto, konferansî dayê, tim fikrê xo beyan kerdo. Rîyê fikranê ey ra kilîse û muhafezekaran o kar ra eşto, surgun kerdo. Dima bolşevîkî zî fikranê ey ra narehet bîyê. Demeyê îhtîlalê bolşevîkan de bi tana pîjemayan û bi linganê warwayan deqaya peyêne de resayo gemîya tewr peyêne ke Rûsya ra vejîyena. Demeyêk Gelîbolu de mando, uca ra xo resnayo Yugoslavya. Hetê Qralîyetê Yugoslavya ra bi payeyê profesorîye Unîversîteya Belgradî rê tayîn bîyo. Axir 18 hezîrane 1925 de Parîs de şîyo rehmet.

Grigory Petrov peynîya serranê 1800an de zaf rey şîyo Fînlandîya ra geyrayo. Nê seyahetan de nêzdî ra bala xo daya rewşa Fînlandîya ser, çîyê ke dîyê xo het not kerdê. Dima nê notan ra no kitabê xo nuşto. Kitab reya verêne 1923 de bi ziwanê sirban, bi nameyê “Zidari Jiveta” Saraybosna de çap bîyo. Dima açarnîyayo bulgarkî ser û bi nameyê “V stranata na belite lilii” (Welatê Gulsosinan de) 1925 de badê mergê nuştoxî Bulgarîstan de weşanîyayo. Hîrê serrî badê pey zî 1928 de tercumeyê tirkî bîyo û bi alfabeya erebkî weşanîyayo. Tirkan dima 1930 de transkrîbeyê alfabeya latînkî kerdo.

Kitabê Grigory Petrovî Yugoslavya û Bulgarîstanî ra vêşêr Tirkîya de eleqeyêko zaf pîl dîyo. Hende ke roşinvîr û brokratanê dewleta tirkan fikrê ke kitab de qisey benê, seba ke Tirkîya de bêrê tetbîqkerdiş, sey programê averşîyayîşî (kalkınma programı) qebul kerdê. Vanê, Mistefa Kemalî bi xo emir dayo ke mufredatê mektebanê eskerî de ca bigîro. M. Kemalî vateyê “Sağlam kafa sağlam vucutta bulunur” nê kitabî ra, yanî Grigory Petrovî ra girewto. Grigory vano “Ruho saxlem wucûdo saxlem de beno.” Rojnameyê Cumhuriyeti 1960 de efseranê artêşa tirkan ser o yew anket kerdo. Hema vajîn ke cewabê persa “Kitabo ke şima wendo ra kamcînî şima ser o tewr zêde tesîr kerd?” hemîne de eynî yo: Beyaz Zambaklar Ülkesinde

1928 ra hetanî 2008, Tirkîya de 41 rey newe ra çap bîyo. Ancî hetanî nika hetê panc kesan ra cîya-cîya bulgarkî ra, tewr peynî de zî reyke rûskî ra tercumeyê tirkî bîyo. Tirkîya de kitabê xerîbî ke tewr zaf çap bîyê û ameyê wendiş ra belkî no kitab tewr sere de bo. Grigory Petrov kitab de bi heyecan û eşq behsê tarîxê miletê suomî û rewşa welatê înan Fînlandîya keno ke senî bindestîye ra, halêko perîşan û reben ra vejîyayî û nasnameyê xo yê neteweyî ser o kulturêko berz û welatêko mufereh awan kerd.

Şarê Fînlandîya ke hem xo ra hem welatê xo ra vanê “suomî” sey ma kurdan caran xoser nêbîyê; bi seserran ge binê destê swêdîyan de ge binê hukmê rûsan de mendê. “Suomî” yeno manaya “welato awzêm” yanî bi tirkî “bataklık ülke”. Erdê Fînlandîya ke tewr vakûrê Ewropa de maneno û kerre, avzêm û daristananê wehşîyan ra yeno meydan, mîyanê Rûsya û Swêdî de sey qela yan zî sey sînorêkê tebîî bîyo.

Fînlandîya de bi nameyê madenî çîyêk çin o, zîraet zî bi hezar zor û zehmetî bîyêne. Ziwanê înan zî eynî sey kurdkîya ma zaflehçeyî û prîmîtîv ke tim binê tesîrê swêdkî û rûskî de bîyo. Tewr peynî de Rûsya 1808 de Fînlandîya sey eyaletêkê xo îlan kerda. Qeyserê Rûsya Aleksandrê yewinî seba ke xo îdare bikerê tayê îmtîyazî dayê suoman. Bi no qayde teber ra ney la xo mîyan de bîyê xoser, înan bi xo xo îdare kerdo.

Grigory Petrov ke vano “ganî her kes bibo mîmarê heyatê xo; zorê ruhê xo yê xirab û nêweşî bero, ruhê xo yê rindekî vejo meydan” kitabê xo de nîşan dano ke miletêko bindest û perîşan senî wirzeno payanî ser, senî kulturêko berz ano meydan, senî nasnameyêko neteweyî pêano û welatê xo keno welato tewr mufereh yê dinya. Grigory Petrov vano, eke yew şarî de xusustîyetê pîlîye û qehremanîye estbê o milet muheqeq sey bruskî virseno û xo mîyan ra qehremanan vejeno. Ney, eke yew komel tena telpeyêkê hutî ra ameyo meydan, a game tu hêzêk nêeşkeno ê şarî ra brûsk vejo; brûsk hewran ra yeno meydan. Refah û bextewarîya welatêk, rûmet û şerefê komelêk, îrade û waştişê şarê ê welatî ra girêdaye yo. Yanî eke miletêko reben teslîmê ruhê xo yê pîsî bibo û xo layîqê bindestîye bivîno, temamê lîderê dinya ê miletî rê pêşengîye bikerê zî, xelasîya xo çin a. Ney eke ruhê miletî de waştişê serfirazîye bibo, o milet xo mîyan ra muheqeq qehremananê xo vejeno û reseno xoserîya xo ya bişeref û rûmete. Nuştox sey delîl mucadeleyê welatêkê qijkek, feqîr û bêîmkanî Fînladîya ke o wext wayîrê di mîlyonî nufusî bîya nîşan dano ke senî xo mîyan ra qehremanî vetê; qehremanê awankerdiş û viraştişî.

Grigory Petrov kitabê xo de herçiqas averşîyayîşê Fînlandîya û şarê suomî de rolêko bi mubalexe dano roşinvîr Snelmanî zî, esasê xo de her war de lîderîya averşîyayîşê soumîyan karekteranê cîya-cîyayan rê bare keno. Yanî sey miletanê Rojhelatê Mîyanênî, averşîyayîş tena bi lîderîya yew kesê nîmhomayî nêbeno. Ruhê miletê suomî de hewrê xurtî estê, nê hewrî resenê pê, her ca ra virsikî virsenê: Snelman bi suomkî rojname vejeno, meqaleyan nuseno, her ca de konferansan dano. Doktor şino dewan ra geyreno, keşîş Makdonald warê xo de waizan dano, dikandar beno tucarêko pîl, dizd û qatilêko adî beno karmendêko mîyanneteweyî.

Ebeweyn û tutî, efser û leşkerî, malim û wendekarî, dewlemend û feqîrî, bajarî û dewijî, her kes, heme suomî, heme şarê welatê Suoumî ruhê xo yê rindekî şîyar kenê. Dewlemendîya mal û pereyan, xişinkerdişê vêreyî, dizdî û tolazî, kiştiş û quretî ney wendiş û zanayîş, averşîyayîş û mutewazîyîye benê moda. Berzkerdişê kultur û nasnameyê neteweyî yê welatê Suomî beno moda...

Kitabê Grigory Petrovî îdeolojîya huşka ke merdiman xirênena, însanîyet ra vejena nîyo; tede şîdet çin o, nîjadperestî û faşîzm çin o. Vano, dewlete aîleya tewr girde yê miletêk a. Grigory Petrovî de heskerdiş esto; heskerdişê welatî, heskerdişê weşikîye, rindekîye esta. Her kes herinda xo de yew mîsyonerê kulturî yo, her kes herinda xo de beno mîmarê weşikî û rindekîya xo û milet û welatê xo...

Her milet eşkeno xo gore nê kitabî ra derse bigîro. Mi her wext meraq kerdêne ke nê tirkî xizmetê welat û miletê xo de senî motîve benê, çîyo ke înan hende konsantre keno çi yo. Ez nika bawer kena ke motîvasyonê milî yê tirkan de, bitaybetî kadroyanê kemalîstan de, rolê nê kitabî zaf xorîn o. Miletê ma zî eşkeno nê kitabî ra zaf îstîfade bikero.

## Asoya çareseriyê

# Dîsa xwîn rijiya

İsmail Yıldız

Di roj û demên ku li Tirkiye di çarçoveya pêvajoya çareseriya pirsgirêka Kurd de çavli rê ye ku hin pêşketinin derkevin ragêşiyeke nû rû da. Beriya 1 îlonê ku wê ji aliyê Öcalan û rayedarên dewletê ve daxuyaniyên giring bêne ragihandin li Licê navçeya Amedê peykerê Fermandarê PKK'ê Mahsûm Korkmaz (Egîd) hate danîn. Piştî ku beşdariyeke girseyî peyker hate danîn Walitiya Amedê û dozgerê Licê jî ketin nava hewildanan. Piştî biryara xirakirinê ya 1. Dadgeha Ceza ya Sulh ya Licê peyker ji aliyê leşkeran ve hate xirakirin û di gengeşiyê de welatiyek ji aliyê leşkeran ve hate kuştin. Piştî bûyerê jî nîqaşên ku danîna peyker provokasyon e têne kirin. Li aliyê din jî Çikandina peyker bo tevgera Kurd wek serkeftin û pêşketinekê têbinavkirin.

Piştî ki peykerê Egîd di 15'ê tebaxê de li gundê Sisê yê bi ser Licê ve li goristana PKK'yiyan hate danîn, çapemeniya Tirkiye bi firehî nûçe li ser mijarê weşandin. Dîsa çapemeniya Kurdan jî mesele wek pêşketin û serkeftinekê ragihand. Di demeke kurt de peykerê Egîd bu yekem rojeva Tirkiye. Piştî vê bi biryara dadgehê bi sedan leşker ber bi goristana ku peyker lê hatibû Çikandin ve birêketin. Bi vê agahiyê re bi sedan welatî jî li dora peyker gihiştin hev û bi nobedarî hewildan ku peyker biparêzin. Lê piştî ku konwoya leşkeran hat qadê di nava gel û leşkeran de gengeşiyeke tund derket.

Di vê navberê di gengeşiya li goristanê de leşkeran gule li çalakvanan reşandin û di encamê de du kes jê birîndar 4 çalakvan birîndar bûn. Ji wan Mehdi Taşkinê 24 salî li nexweşxaneyê jiyana xwe ji dest da. Û birîndarên li nexweşxaneyê jî têne dermankirin. Piştî gengeşiya li qadê leşkeran peykerê Egîd ji cî hilkişandin û xirakirin.

Tevî van xalan ji aliyê DBP'ê ve daxuyaniyeke nivîskî hate weşandin û nêzikahiya dewletê wek nêzikahiya salên 90'î hate binavkirin. Lê di daxuyaniya DBP'ê de tu agahiyên ku peyker li ser biryara kê û kêngê hatiye Çikandin cîh negirt.

### Taşkın hedef hatiye girtin

Di vê navberê de otopsiya cenazeyê Mehdîn Taşkin jî li Fakulteya Tibê ya Zanîngeha Dîcleyê hate kirin. Di otopsiya ku hate kirin de hate gotin ku Taşkin bi guleya ku ji çepê serê wî ketiye û ji pişt serê wî derketiye jiyana xwe ji dest daye. Di raporê de Tê gotin ku Taşkin ji dûrve hatiye hedefgirtin û hatiye kuştin.



## Divê AKP dev ji vê helwestê berde

KCK jî di derbarê mijarê de daxuyaniyek weşand û diyarkir ku AKP bi agir dilîze û li ser soza xwe nasekine. Di daxuyaniya Hevserokatiya Konseya Rêvebir a KCK'ê de ew xal hatin rêzkirin: Eşkere ye AKP bi agir dilîze. Nirxê herî mezin û dest lê nayê dayîn ê gelê kurd, şehîdên têkoşîna azadiyê ne. Kurd li ser ewladên xwe yên di şoreşa azadiyê de şehîd ketine, li ser keç û xortên xwe dicirive, berdêla wê mirin be jî lê xwedî derdikeve. Ji ber vê yekê AKP'ê bi êrîşa li hemberî goristana şehîdan û bi şewitandina goristanê re, êrîşî tevahiya nirxên kurdan kiriye. Peyam zelal e; Hûnê bênasnametî, koledariyê qebûl bikin. Dixwaze bêje; di rewşeke berevajî de eger hûn li ber xwe bidin, em ê we bişewitînin. Dewleta AKP'ê gelekî baş dizane ku rêheval Mahsum Korkmaz - Egîd sembola berxwedana gelê kurd e. Êrîşa li hemberî goristana şehîdan a li Liceyê, êrîşeke xwedî mejiyekî qirkirinê, red û înkarê ye. Pêwîst e AKP tavilê dest ji vê lîstika xwe ya xetere berde û dawî li êrîşa bîne.

### Atalay: Çikandina peyker provokasyon e

Meseleya peyker di rojeva rayedarên dewletê de jî cîh girt. Cîgirê Serokwezîr Beşir Atalay di bernameyeke televîzonê de Çikandina peykerê Egîd wek provokasyonekê binavkir. Atalay wiha got: Ji nişke ve li Licê peykerek hate danîn. Di demeke ku ez agahiyên girîng didim, di heman demê de şandeya İmralî'yê daxuyaniyên balkêş dide, mesele li qonaxeke herî ciddî ye û di heman rojê de peykerek derdikeve holê. Ji hin derdorên ku ji pêşeroja çareseriyê ne xweşhal in jî hin daxuyaniyan didin. Çikandina peyker provokasyoneke li dijî pêşeroja çareseriyê ye. Di derbarê Çikandina peyker de di destê kesî de agahiyên berfireh nîn in. Provokasyon li her qadê heye. Di nava siyasetê de jî, di nava medyayê de jî. Bi hevkariya van hemûyan ew provokasyon derket holê. Bi şandeya HDP'ê re jî hevdîtin hate kirin û haya wan jî ji meseleyê nîn e.

### Divê şîddet bikarnehata

Serokê Baroya AmedêTahir elçî jî ramanên xwe ji BasNûçe re parvekir. Elçî bal kişand ser hassasiyeta mijarê û got, "Dibûya ku dewletê li hemberî vê mijarê şîddet bikarneaniya." Elçî wiha dirêjî da axaftina xwe, "Dibe ku hin kes li gor encaman Çikandina peyker wek provokasyonê binav bikin. Di dawiya dawî de pêvajoyên wiha xwedî hin hassasiyetan in. Divê herkes bi baldarî nêzikî mijarên wisa bibe. Nexwe rêxistin jî dixwaze hin peyaman bide alîgirên xwe. Dixwaze ku pêşketina hin tiştan nîşanî wan bide. Cihê ku peyker hatî Çikandin çoltêrek e. Ne hewce bû ku hema dewlet şîddetê bikarbîne. Xirakirin û serê peyker di bin pêlavan de hiştin, dibe sedema provokebûna hin derdorên din jî. Bi ya min divê ku ew heykel danîn, ew nêzikahiya ku lingên xwe dane ser, nebûya. Tu fêde ya vê nîn e."

### Faysal Sarıyıldız: Divê dewlet rêzdar be

Parlementerê HDP'ê Faysal Sarıyıldız jî di derbarê mijarê de ew gotin bi me re par ve kir, "Ew bi temamî taxwaz û tewecûha gel e. Bawerim ji gerîllayên li heremê jî piştgiriyê digirin. Biryara Çikandina peyker û goristanê bi temamî gel din ava xwe de daye. Tu biryarên sazî û partiyên Kurdan nîn in. Nêzikahiya bi rengê ku dibêjin Çikandina peyker provokasyon e tiştekî sûbjektîf e. Helbet divê hassasiyetên aliyekî li ber çavan bê girtin. Divê li hember êşên me ew jî rêzdarbin. Hevalên me bi walitî û saziyên fermî re di nava dan û standinê de bûn. Lê li benda vê nesekinîn û lez peyker hat xirakirin. Divê kîn û hassasiyetên herdû aliyan jî li er çavan bêne girtin. rê û rêbazên din hebûn ku bikarbihatana. Hun radibin bi wesayîtên zirxî û bi firokeyan diçin û peyker xiradikin û dibin sedema şikestina di nava gel de. Divê dewlet jî hin sembol û hassasiyetên gel xeyrî meşru nebîne êdî. Dibûya ku dewletê ew wek mafekî meşrû bidîta."

### Kurt: Çikandin jî xirakirin jî provokasyon e

Parlementerê berê Abdurrahman Kurt, "Li Tirkiye pêvajoyeke çareseriyê di rojevê de ye û divê herkes li gor vê gavan biavêje. Heyeta Kesên Aqilmed hat avakirin û wan hin xebat kirin. Di van xebatan de derket holê ku bi provokekirina tirkan dê tu pêşveçûn dernekevin û çareserî nayê. Çikandina peyker û bûyerên ku li Wanê diqewimin dibe sedema ku nêzikahiya rêxistinê ya pêvajoyê bê nîqaşkirin ka çiqas samîmî ne. Helbet bi qasî Çikandina peyker, şiklê midaxaleyê jî ewqas xelet û şaş e. Divê herdû alî jî ji tevgerên ku hevûdin provoke dikin paş ve bên. Dîrok wê tevgerên kesan ne, samimiyeta li hemberî pêvajoya çareseriyê binivîse. Ew Çikandina peyker provokasyoneke û şiklê xirakirinê û pê li serîkirin jî provaksyoneke. Divê herdû alî li hemberî hev rêzdarbin. Di nava arteşê de jî hin derdorên ku van provokasyonan dixwazin hene. Divê herkes hayîdar û baldar be.


Dîmenek ji Farqînê


Dîmenek ji Farqînê

# Farqîn, peytexta dîrokê



Navçe ya Farqînê, 84 km li bakûrê rojhilatê Amedê ye. Farqîn bi navekî xwe yê din Silîva, li ser rêya Amed, Batman, Bêdlis û Sêrtê cîh digre. Xeta hesinî ku ji ser Amedê ve diçe Misricê, 35 km li başûrê Farqînê dikeve. Silîva heremên Xerzan, Mêrdîn û Amedê jî digîjîne hev.

**Erdnîgar**

Pîvana xaka Farqînê 1.379 km² ye. Nîvê xaka Farqînê ji gir û çiyayan pêk tê. Çiyayên Farqînê herçiqas ne pir bilind bin jî, wek sîlsîleyan direj dibin û li hin deveran asê ne. Çiyayê Zivêtirkê, Çiyayê Narikê û Çiyayên ku Farqîn li quntarên wî hatiye avakirin; Çiyayê Laf.

Xaka Farqînê ber bi Bismil û Batmanê ve ji deştên rast pêk tê. Bi sedan km² deşt li keviyên Çemê Sînanê, Çemê Batmanê û Çemê Dîjleyê dirêj dibe. Deverên rast ê vê navçê bi navê Deşta Silîva tê naskirin. Li Farqînê bi navên Deşta Badika, Qeremûsê û Çolahesto sê deştên biçûk jî hene.

**Lawirvanî**

Debara gel bi hilberîn û çandiniyê ye. Titûn û birinca Farqînê bi nav û dengin. Li bajêr depoyekî titûnê, fabrîqeyekî arvan û atolyeyekî kirêcê heye. Herwiha di salên dawîn de li xaka Farqînê û li deştê kiştûkala avî jî destpêkiriye. Piştî temamkirina bendava Farqînê ku li ser çemê Batmanê tê avakirin, wê li ser xaka bajêr nebatên wek pembû jî bê çandin. Farqîn li Amedê yek ji depoya genim, ceh, nîsk û şadeneka ye jî.

Lawirvanî jî di aboriya bajêr de cîhekî girîng digre. Hem li heremên çiya û hem jî li deştê, gelek malbatên gundî yên Farqînî debara xwe bi keriyên pez û garanan dikin.

> **Farqîn ku wek her bajar û navçeyên Kurdistanê bi pevçûn bûyeran dihate zanîn, êdî dê bi cihên dîrokî û xwezeya xwe ya balkêş bê nasîn.**

**Rêvebirî**

Silîva li gor sîstema rêvebiriyê navçeyeke û Amedê ve girêdayî ye. Dû xopan û 65 gundên Farqinê hene.

Hijmara şêniyê ji sed hezarî zêdetir e. Bi vê şêniya xwe Farqîn li Amed û li Kurdistanê navçe ya herî mezin e. Rûniştvanên Farqînê tev kurd in. kurdên bajêr ji mezheba Sunî ne û bi Zarava kurmancî diaxifin.

Li Farqînê jiyana kurdan a otantîk hîn jî didome. Piraniya gundên Farqînê li kêleka rêyan avabune. Li ser her 100 km² erd penc gund hene. Ji ber vê yekê gund û gundîtî hîn jî di jiyana civakî û a aboriya bajêr de cîhekî girîng digre.

**Dîrok**

Di nava navçên Amedê de Farqîn bajarê herî kevn e. Ev navçe di dîroka Kurdistanê de rolekî girîng leyîstiye. Farqîn di dîrokê de bi gelek navan hatiye naskirin. Meyafarqîn, Martîropolîs, Silîvan, Sîlwan çend ji navên vê navçê ne.

Dîroka damezrandina Farqînê ne zelal e. Tê hezrkirin ku bajêr di dema Ûrartoyan de hatiye avakirin. Lê dîsa jî li ser vê mijarê gelek dîtinên cihêreng hene. Li gor hin çavkaniyan sazûmankarê Bajarê Farqînê Marûsa Layûta ye ku wê demê bajêr bi navê Martîropolîs tê naskirin. Li gor hin çavkaniyên din Farqîn di dema Asûriyan de hatiye avakirin.

Generalê Alman Helmut von Moltke jî îdîa dike ku Farqîn b.z di sala 80'an de ji alî Tîgranê Mezin ve hatiye damezrandin û navê bajêr ê wê demê 'Tîgranokerta' bûye. Moltke dibêje, 'Farqîn b.z ji alî fermandarê Îskender Lukulûs û fermandarê Neron, Karbûlo ve jî hatiye bidestxistin.'

Dîrokzanê Farqînî Îbn-ul Erzak jî dibêjê, 'Pîsîkoposê Farqînî Marûsa ji Împaratorê Bîzansê û ji hukumdarê Îranê destûr digre ku ji bo şehîdên ola Îsewîtiyê lê veşêre, bajarekî avadike. Ev bajêr Farqînê. Û li ser vê yekê di wateya 'Bajarê Şehîdan' de navê 'Martiropolîs' lê daniye.

**Bajêr di sedsala 6'an de yek ji navendên giring ê Bîzansê bûye.**

Piştî ku Artêşa Erebên Musluman Kurdistanê bidestdixe, Farqîn jî, ji alî fermandar Îyaz bin Ganem ve tê girtin. Di demên dawîn de bajêr ji alî Hemdanî, Buweyxî, Merwanî, Artûqî û Eyûbiyan ve hat bidestxistin.

Farqîn di sala 1241'an de di encama êrişa Moxolan de hat şewitandin. Di dema sefera Amedê de jî ket destê Artêşa Tîmûr û paşê jî ket bin desthilatiya Şah Îsmaîlê Sefewî. Bajêr piştî şerê Çaldiranê, tevî hemû Bakûrê Kurdistanê ket destê Osmaniyan.

Di demên kevn de Farqîn wek mozaîqekî gel û olan bûye. Li bajêr ji bilî kurdan, Ermenî û Suryanî jî hebûne. Li gor salnameyên demê di sala 1871'an de hijmara şeniya navenda Farqînê 14 hezar bûye.

Bajarê Silîva ji dewleta Merwanî re jî peytextî kiriye. Dewleta Merwanî di sala 948'an de derketiye dika dîrokê û yek ji dewletên kurdan e. Sazûmankarê vê dewletê Badê Dostikê. Piştî dehan sal ku li Farqînê desthilatiya Merwaniyan dajo, ber bi salên 1200'an ve Eyûbî, Farqîn û


Minara Qot

Amedê bidest dixin. Eyûbî jî yek ji dewletên kurdan e.

Di serê sedsala 20'an de piştî belavbûna Dewleta Osmanî ku kurdan rêxistinên wek 'Kurdistan Teali Cemiyeti' damezrandin û li welat şaxên ve rêxistinê vekirin, yek ji saha xebata wan jî Farqîn bû. Şaxa vê cemiyêtê li vî bajarî jî dixebitî.

Farqin di Serhildana Şêx Seîd de jî yek ji navendên serhildanê bû. Bajêr piştî destpêka serhildanê bi alîkariya gelê Farqînê hat rizgarkirin û ket destê serhildêran.

Di serhildanê de li çiyayên Farqînê eşîrên wek Badikan, Xiyan, Bekiran, Barinan, Boşatan û Hevêdan rolên girîng leyistin. Bajêr heta dawiya serhildanê di destê hêzên kurd de ma. Piştî tefandina serhildanê welatparêzên pêşîn ku hatin bidardekirin Farqînî bûn. Wek mînak di vê serhildanê de tenê ji gundê Boşatê 52 kes ji alî artêşê ve hatine qetilkirin. Herwiha di serhildana Eliyê Unîs û di Serhildana Raman de jî eşîrên Farqînî rolên giring leyîstine. Piştî têkçûna van serhildanan gelek gundên Farqînê hatine şewitandin.

Di sala 1938'an de Şêx Fexriyê Farqînî di çiyayên Farqînê de li dijî komara Kemalîst dest bi serhildanekî kir. Gelek şerwanên Şêx Fexrî bi salan di çiya û geliyên Farqîn, Qulp û Sasonê de li dijî artêşê şer kirine. Di encam de Şêx Fexrî tevî grûbekî hevalê xwe li Geliyê Godernê di şer de jiyana xwe wendakiriye. Kilama gelêrî 'Bavê Fexriya' li ser Şêx Fexriyê Farqîni hatiye gotin.

### Salên dawîn

Farqîn ber bi salên 1960'an carek din ket nav tevgerê. Di van salan de li bajêr partî û rêxistinên welatparêz hatin damezrandin. Yek ji mekanên xebata welatparêzên kurd, Farqîn bû. Serhildana 1962'an a Başûr jî li bajêr bandora xwe kiribû.

Ji ber ku navçe li ser rêyên Bedlîs, Wan, Sêrt û Amedê bû, ji pêşveçûnan zû bi hay dibû. Di van salan de TÎP û PDK-T li Farqînê xwedî gelek alîgir bûn. Di dawiya salên 1960'an de 'Rêzexwepişandanên Rojhilat' li Farqînê destpêkir.

Welatparêzên kurd di şêrtên wan rojan de bi daxwaz û dirûşmêyên li dijî stema dewlet û axayan gel radikirin ser lingan. Helbet operasyonên qomando û bêçekkirina gel jî ji vê navçê destpêkir. Hêzên artêşê li Farqîn û derûdorê işkence û tahdeyekî ecêb dimeşand. Armanc şikestina bandora tevgera Başûrê Kurdistanê û tirsandina gel bû. Artêşê ji gundiyan bi zorê çek jî berhev dikir. Ev zilma ku ji alî xebatkarên DDKO'yê ve hat belgekirin, bû sedemên reaksiyonên tund.

Piştî salên 1970'an Farqîn êdî devereke serhilder bû. Rêxistinên welatparêz vê navçê wek navendekî


Hesûna


Pira Malabadê

hilbijartibûn. Wan salan li Farqînê welatparêzên wek Muhterem Biçîmlî, Nezîr Bağcı, Mele Abdulkerim Ceyhan, Hemê Apo, Bahri Evliyaoğlu, Şêx Mîzbah, Mehdi Zana û Niyazi Tatlıcı serkêşiya xebatên kurdayetiyê dikirin. Farqîn bajarekî bû ku şûnewariya kurdayetiyê dijiya.

Di sala 1984'an de ku li şerê çekdarî destpêkir, gêrîllayên herema Amedê li çiyayên Farqîn û derûdorê bargeh danîn. Rê û derbend di destê wan de bû.

Ber bi salên 1990'an li nav bajêr û li gundên derûdorê serhildan û çalakiyên gel destpêkirin. Li Farqînê rojên bê tevger derbas nedibûn. Di hilbijartinên sala 1999'an de şaredariya bajêr jî ket destê berendamên HADEPê.

Li hember serhildana Farqînê rejimê helwestekî tund nîşanda. Bi destpêka sala 1991'an şebekeyên kujer ketin nav sûka Farqînê. Heta sala 1995'an li Farqînê bi sedan kes ji alî van çeteyan ve hatin kuştin. Dîsa gelek gundên alîgirê hêzên gêrîlla hatin valakirin û şewitandin. Bi sedan kes hatin girtin. Farqîn carekî din ket nav agir û alazên zilmê.

### Mizgefta Eyûbî

Berhemekî kevnare a bajarê Farqînê Mizgefta Mezin e. Ev mizgef bi navê Mizgefa Ecem û bi navê Mizgefta Eyûbî jî tê naskirin. Li Kurdistanê yek ji mizgeftên herî kevn e. Di sala 1031an de hatiye avakirin. Mizgeft di dema desthilatiya Eyûbiyan de, ji alî Selehedînê Eyûbî ve jî nûh ve hatiye lêkirin.

Ji bilî van berheman li Farqînê gelek berhem û bermayiyên dîrokî hene. Mizgefta Mala Mîran, Mizgefta Qere Belûl Begê, Qesra Boşatê, Keleh Baqûzê, Keleh Başqayê, Xirbên Xezaliyê û Koşka Ustûnan hin ji van berhemane.

### Pira Malabadê

Pira Malabadê yek ji sembolên Farqînê ye. Malabadê gundekî Farqînê ye û li bakûrê bajêr dikeve. Pira Malabadê ji Amedê 104 km dûr e.

Li gor kîtaba avahiyê, Pira Malabadê di sala 1447'an de hatiye avakirin. Pira ku li ser Çemê Batmanê hatiye avakirin, seranser ji kevirên spî û ê brandî hatiye lêkirin.

Pênc çaviyên pirê hene. Ji van çaviyan yek gelek mezin e. Û a ku navê pirê bi cîhanê daye naskirin ev çavî ye.

Çaviyên din ku li rex hevin, biçûkin. Li ser kembera pirê di qurfe hene. Her yek li rexekî pirê cîh digre. Bilindahiya pirê ji avê 7 metre, firehî jî 7 metre ye.

Pira Malabadê ji alî dîroka mîmariyê ve berhemeke girîng e. Lekolînvan Albert Gabriel ji bo pira Malabadê wiha dibêje: Dema ku çaviyên vê pirê bi vê firehiyê çêbûye, hesabê modern ê statîk tûnebûye. Ji ber vê yekê ev avahiyeke muhteşem e.

Ji pira Malabadê 15 km dûr, li bakûrê rojhilat Pira Kemkûkê jî heye. Ev pir jî di sedsala 7'an de hatiye çêkirin.

### Dengbêjî

Farqîn di warê ozan û dengbêja de jî deverekî navdayî ye. Ozan Cewad, Ozan Şiyar, Ozan Cotkar, Ozan Azad, Nihatê Boşatî, Hesenê Boşatî, Zozan û Welat, Mahfûzê Fêrî, Mahmut Kızıl û Beyto Can çend ji dengxweşên Farqînê ne. Eyşe Şana dengqedîfe jî ji ava kahniyên Farqînê vexwariye. Eyşe Şan a navdar li Farqînê mezin bûye.

## Birca Zembîlfiroş

Dîroka avakirina keleha Farqînê ne zelale. Keleh çargoşe ye. Ji rojhilat ta rojava dirêjiya dîwaran 600 metre ye. Ji bakûr ta başûr jî 500 metre ye. Keleh di demên kevn de bi diwaran ve hatibû pêçan. Li gor çavkaniyên kevn 9 deriyên kelê hebûne. Çar derî li başûr, dido li bakûr, dido li rojava û yek jî li rojhilat bûye.

Îro Deriyê Qulfayê, Deriyê Boşatê û Deriyê Kaniya Dergê tenê tên zanîn. Li ser dîwar û deriyên kelê gelek kîtabe hene. Piraniya van kîtabeyan ji Merwanî, Eyûbî û Artûqiyan mane. Kele di dema Împaratorê Bîzansî Justinyusê yekem de hatiye tamîrkirin.

Lêkolînvan Süleyman Savcı ku di sala 1944'an de Keleha Farqînê resmkiribû, bi taybetî behsa zerafet û delaliya deriyên kelehê dike. Savcı dibêje; 'Hele Deriyê Qulfayê û xetên ser nivîsarên wî, rewşên wê, bi serê xwe wek abîdeyekî hunerî bû.'

Mixabin îro ev kevir û kîtabêyên kelê hatine taxrîpkirin. Ji ihtişam û delaliyê Keleha Farqinê pir tişt li paş nema ye.

Dema behsa Keleha Farqînê tê kirin, Birca Zembîlfiroş tê bîra mirov. Efsana Zembîlfiroş evînekî yekalî tîne ziman û navê xwe dayê vê bircê. Kilam û çîroka Zembîlfiroş hîn jî di nav gelê Farqînê de tê gotin.

# Tirkiye rê li serxwebûna Kurdistanê vedike

Cesim İlhan

Nivîskarê Rojnameya Zaman Ali Bulaç diyarkir ku Rojhilata Navîn êdî gelek tişt guhirîne, tu tişt wek berê nabin û guherînên li heremê ji bo berjewendiyên kurdan xwedî girîngiyekê ne. Bulaç got Tirkiye bi firotina nefta Kurdistanê hem rê li serxwebûnê vedike û hem jî serê xwe di nava belayeke mezin re dike.

Bulaç pirsên me yên di derbarê DAIŞ, serxwebûna Kurdistanê, neft û Rojhilata Navîn de bersivandin.



Ali Bulaç

Ger ku Iraq parçe bibe, Bakur dikeve bin qontrola Tirkiyê, Başûr jî dikeve bin qontrola Îranê. Ev jî di demeke kin de ne li gor plana Emerîqa'yê ye. Niha Tirkiye li hember Emerîqa polîtîkayek wiha didomîne. Tirkiye bi vê polîtîkaya xwe hem serê kurdan û hem jî serê xwe dixe belayê.

## Kî piştgiriya DAIŞ'ê dike?

Di teoriyê de sê kes dibê piştgirî bide wan; Tirkiye, Erebîstan û Misir. Li Misirê Birayê Misliman bi derbeyê hatin daxistin niha bi derdên xwe mijûl in û ne pêkan e ku bandorê li van deran bikin. Rêveberiya niha di hêla pere, siyasî û diplomatîk de hewceyê Erebîstanê ye. Aboriya Misirê ya ku hilweşiyayî Erebîstan li piya digre. Tirkiye li herêmê polîtîkayek çewt kir. Bi taybetî li Sûriyê û Iraqê polîtîkayeke çewt kir. Xwest li Iraqê Malîkî li Sûriyê Esad hilweşîne lê nikaribû. Ku wiha bû, ji bo piştgiriya sûnneyan tenê Erebîstan ma. Tirkiye piranî Erebîstanê piçûk dibîne. Erebîstan naxwaze Tirkiye bi rengê Osmaniyan vegere herêmê û ji bo wê ji xwe re tehdît dibîne. Ji ber ku Tirkiye endamê NATO'yê ye dizane tenê ew dikare pêşiya Îranê bigre. Îran û Birayên Misilman jî ji xwe re wek tehdît dibîne. Ji ber ku Tirkiye nakirabû Esad û Malîkî hilweşîne Erebîstan bandora xwe li ser xeta sûnneyan bi bandor bû.

***Di serê hezîranê de DAİŞ ket Mûsilê û dest danî ser çekên artêşa Iraqê û ev jî bû sedem ku li Rojhilata Navîn hin tişt biguherin. Li kêleka wê Pêşmergeyên kurd jî ketin Kerkûkê. Ji îro pê ve rewşeke çawa li ber Iraqê ye?***

Demek dirêje tê gotin ku bi projeya mezin ya Rojhilata Navîn Iraq û Sûriye dibe sê parçe. Bi van bûyerên dawî ev pêkantir bû. Ku em li resmê heyî dinêrin tabloyekî bi vî rengî heye; li bakûrê Sûriyê û Iraqê herêmên otonom yên kurdan derketin. Li bakûrê Sûriyê herêmên xweser hene, li bakûrê Iraqê jî dewletek federal heye û ber bi dewletek serbixwe ve diçe. Ez ne bawerim ku kurdên li bakûrê Iraqê ecele bikin. Bi lezgînî bingeha dewletbûnê ava bikin. Li başûrê Iraqê jî şîa serdest in, ew jî di bin desthilatiya Îranê de ne. Dema ku şîa û sunne bi hev re tevbigerin derbas bû. Niha bakûrê Iraqê û Sûriyê li ser xetekê digîje hev. Xetek kurdan pêk hat. Sûnneyên Iraq û Sûriyê bê xwedî man. Ji ber ku li pişta kurdan hêzek mezin heye, bi taybetî DYA piştgiriya kurdan dike. Li pişta şîa û elewiyan jî Îran heye. Di vê rewşê de sûnne bê xwedî man.

***DAİŞ xwe wek "Dewleta İslamî ya Iraq û Şamê" bi nav dike. Çima ne Sûriye lê Şam?***

DAİŞ dibêje Dewleta İslamî ya Iraq û Şamê. Dîroka Iraqê tê zanîn, Sûriye Şamê nahûndirîne, Şam Sûriyê duhundirîne. Ango Şam ji Sûriyê mezintir e. Dema em dibên Şam ev Bîladî Şam e; Sûriye, Lûbnan, Irak, Ûrdin û Felîstîn dikeve navê. DAİŞ dibêje li van her pênç welata serdestê sûnneyan ez im.

***Mûsil di destê DAİŞ'ê de ye. Ew rastî bo pêşerojê tê çi wateyê?***

Niha Mûsil di dîrokê de bûye warê turkmen, ereb û kurdan. Mûsil piştî Bexdayê navenda herî mezin e. Li Mûsilê tabana DAİŞ ereb in. Van ereban dema Sedam de têkçûn dîtin. Li Iraqê serkirdeyên DAİŞ û kesên ku piştgiriya wan dikin ji hev cihê ne. Lê niha berjewendiyên wan wekhev in. Sûnne çiqas li hember Malîkî û Îhvanan têbikoşin DAİŞ ew qas dikare li wir xwe bi cî bike. Ku çawa ketin Mûsilê komutanê Sedam İbrahim El Durî wek walî tayîn kirin. Bingeha DAİŞ'ê li Sûriyê ne xurt e, li Iraqê şansê wan zêdetir e ji ber ku kesên ji hêla Malîkî ve hatin mexdûrkirin hene. Ku DAİŞ tiştekî ecêp bike dikare bikeve Bexdayê. Ya herî xirap ew e ku bikeve Kerbelayê. Heta dikare bikeve Ruha û Nisêbînê.

***Pêkhatinên li Rojhilata Navîn li gor kê baş e û li gor kê xirab e.***

Desteserkirina Iraqê û bûyerên li Sûriyê li gor berjewendiyên kurdan in. Lê ew lêhatin ne li gor daxwazên navnetewî ne.Tercîhek siyasî, ku piştgiriya navnetewî nestîne nikare biserkeve. Parçebûna kurdan di nav çar dewletan de, şiyarbûna wan a netewî, berdewamiya dewletên netewî û şoreşa îslamî ya li Îranê hestên kurdan yên netewî jî şiyarkir.

***Neft di warê dewletbûna kurdan de xwedî bandrek çawa ye?***

Kurd niha dewleteke ava dikin. Ez nizanim ku di serî de ew hesaba kiribin an nekiribin lê niha ji nefta Baasiyan zêdetir neft di destê wan de ye. Herêma kurdan ji sedî 17 para xwe li neftê digire lê hewcedariya wan bi vê jî nema.

***Piştî ku nefta Kurdistanê bi rêya Tirkiyayê derket piyaseya cîhanê Iraq û DYA li hember vê derketin. Ew tê çi wateyê?***

Tirkiye polîtîkayeke xelat dimeşîne. Tirkiye di gotinê de naxwaze Iraq parçe bibe lê di rastiyê de Iraq û Sûriyê perçe dike û pêşî ya Kurdistana serbixwe vedike. Vê yekê jî bi zanetî nake. Hukumeta niha serxwebûna Kurdistanê li demek dirêj belav dike. Bi firotina petrola kurdan Tirkiye serê xwe dike belayê. Fikra Tirkiyê ya niha ev e: "Kurdistanek ava dibe, ez ava bikim, ezê wek Qibris wir jî bixim bin desthilatiya xwe."

***Ji bo aramiya Rojhilata Navîn çareseriyeke çawa divê?***

Li herêmê sê dewletên mezin hene; Tirkiye, Îran û Misir. Gere vana bibêjin wek YE'yê em yekîtiyekê çêkin û dû re dewletên din tevlî vê bikin. Wek YE'yê yekîtiya misilmanan ava bikin. Em di rewşek wisa ecêp de ne ku Malîkî û Zebarî ji DYA'yê alîkariyê dixwazin. Tirkiye jî li hember PKK di 2012'an de ji NATO alîkariyê dixwaze. Şîa sûneyan dikujin, sûnne şîa dikujin. Her tişt ketiye nav hev. Ev dide xuyakirin ku hişê misilmanan jî tevlihev bûne.

# Hêza sînorên bê wate

Vicken Cheterian





Bi heman awayî, hikûmetên ereb yên modern paradoksa kevin a osmaniyan bi taybet du berekî û hesasiyetên olî ku ji civakên olî yên di bin piştgîriya Osmaniyan de bû weke mîrate ji xwe re birin. Împratoriya Osmanî, bêy hikûmeta dînî ya misilman, serxwebûneke kêm dabû kêmîneyên olî (Artudoksa yûnanî, ermenî, cihû û Sûriyeyiyên Ortudoks) û bi rêya hêzên çekdar yên Yeni Çeri yê piştîvaniya wan dikir. Lê di nîviya sedsala nuzdan de herêmên ku li Balkanê ji dest dan û heşîmeta hevwelatiyên krîstiyan nêzî yek ji çara hemû şêniyan kêm bû. Ji ber wê Sultan Ebdulhemîdê duyem biryar da îdeolojiya îslamî bihêz bike û krîstiyanên ku qurbaniyên tund û tijiyan bûn ji wxe dûr kirin.

Sîstema piştîvaniya ji civakên olî ya Osmanî, li Lubnanê ji aliyê Fransayê ve jî hate bicîhkirin. Civakên olî bi awayê serbixwe kar û barên navxweyî yên xwe birêve dibirin û di hemû navendên milî de pişikdar bûn.

Bi wî awyî lazim bû serokkomar Krîstiyan, serokê meclîsê şiî û serokwezîr sunneba. Piştî Şerê Cîhanî yê Duyem, dema ku herêm di nava sîstemên seltenetî ya konservativ û hikûmetên komarî ji neteweperestiya ereb parçe parçe bibûn, sîstema han gelek cuda bû.

Lê bîst sal şûnde, netewepersestiya erebî bê ku bikare li herêmê hevgirtinekî pêkbîne, hewil da meşruîyet û bingeha hikûmet-miletê xirab bike. Ji dema darbera Basiyan di sala 1963'ê de, Sûriye ji aliyê çîbnekî ve hate rêvebirin ku bi tundî dijberî meşruîyeta hikûmeta xwe û hevgirtina pan ereban bû.

Sîstema heyî rê li ber girt û bêjên navxweyî girt, sansûr û serkut dikir: çînên xwedî şiyanên Sûriyê bi tu awayî derbarê kultur yan atmosfera siyasî ya hevbeş li hev nekirin. Îdeolojiya pirrengîyên dinava civakê de xeniqandin û hêzeke malbatî ya komarî dihate rûniştin. Ev hêz li Sûriyê bi ser ket lê li Misrê, Lîbiya û Yemenê ku "Bihara Ereb" rewş guhert, bi ser neket. Ferqa di navbera "komar" û seltenetên erebî (Urdun, Fas, welatyên kendavê) bê watene.

Li Îraqê jî weke Sûriye û Misrê, lawaziya milkiyeta bajêrvaniyê û çînên navendî yên metrepolan pirsgirêkeke mezin afirand û rê li ber îstiqrara atmosfereke siyasî ya serbixwe girt. Di dema serxwebûnê de, ev yek bû sedem ku arteş tedaxulê bike û bi mebesta xapandina raya giştî sloganên weke Yekitiya Ereban, azadkirina Fislistînê û edaleta civakî didan.

Di 30 salên borî de, navendên leşkerî û dîwanên dewlete neşiyana xwe li hember rewşa heyî ragehandin û bi zêde bûna krîza aborîyê re serkut kirin jî zêdetir bûn. "Bihara Erebî" di dawiyê de komarên ku di nav xwe de kevin bibûn nehêla. Derbarê seltenetan de, wan bi sûd standina ji zêdebûna îslama siyasî ku bi dilê wane, niha bi nerazîbûnên olî re rû bi rû ne. Di tevahiya dîroka xwe de îslam hêzeke hevgirtinê ye. Pêxemberê îslamê, Mihemed karî qebîleyên çolger yên Erebistanê li dora hev bicivîne ku di bin bandora cêgirên wî de împiratoriyek pêk hat. Herwiha ala wê împiratoriyê xanedanên ne ereb, bi taybet Samaniyên Asyaya navîn û Selcuqiyên ku piştî serkeftina îslamê bûne aligirên wê gehandin hev. Îslamê qebîle û gelên cuda li dora hev civandin ku sîstemeke siyasî ya hevbeş qebûl kirin ku têde krîstiyan û cihû di rewşa jêrdest de lê li jêr piştîvaniya îslamê de bûn.

> **" li Îraqê edî nêrîna netewî tuneye. Ew bidawî bû. Şiî dengê xwe didin şiîyan, sune didin suneyan û kurd dengên xwe didin kurdan".**

Lê îslama siyasî ya heyî aliyê xwe yê cîhanî ji dest daye û li cîhê ku sedema hevgirtinê be, bûye sedeme çend berekiyê. Hêzên seltenetên muhafazakar nûneriya wî olî dikin ku grûbên cîhadî yên ku îdeolojiya bersiv dayînê hene. Li Sûriyê, cîhadiyên Şîe(Hizbulaha Lubnanê û Esayeb El heq a Îraq)ê bi cîhadiyên sune re şer û kûrahiya geliyekî ku grûbên cuda yên îslamî ji hev cuda dike nîşan dide.

Li Îraqê, serokê Jurdan î Ebu Museb Elzerqawî tevî ragehandina guhdariyê di sala 2004ê de û salek û nîv beriya mirina xwe, hertim mesafeya xwe bi Usame Bin Laden radigirt. Li Sûriyê, Cebhet elNusre tya girêdayî El-Qaîdê di destpêka sala 2012'ê de bi fermandariya Ebû Mihemed El-Culanî hate damezrandin, lê serkirdeyê cîhadiyên Îraqî, Ebubekir El-Bexdadî damezrandina DAIŞ'ê ragehand. wî bi wê karê xwe şerekî ewqas bêrehmane di navbera du çiqilên cîhadiyan de afirand ku di encamê de Serokê El-Qaîdê, Eymen El-Zewahirî bêy ku bandoreke mezin çêbike, helweşîna DAIŞ'ê ragehand. Ebû Xalid El-Sûrî û şandiyê taybetê Zewahirî, ku hatibû erkdar kirin ku dawiyê bi pirsgirêkên di navbera du grûban de bîne, di Sibata 2014'an de li Helebê hate kuştin.

> **Artêşa Sûriyê dikare biryarê bide ku hêzên xwe li ku û kêngê li hember dijminan kom bike, lê şiyana kontrol kirina wê nîne.**

Tundû tîjiya olî nîşaneya helweşîna civakî û siyasî li welatekî ku di nava krîzan de niqum bûye ye ku dinêre ka çawa atmosfera siyasî bûye meydana şerê olî.

Serokê dîwana peywendiyên derve ya hikûmeta herêma Kurdistanê, Felah Mistefa Bekir dibêje: "li Îraqê êdî nêrîna netewî tuneye. Bidawî bû. Şîe dengê xwe didin Şîeyan, Sune bi suneyan û kurd dengên xwe didin kurdan".

Bi wî halî, tevî ku rûbirû bûn li rojhilata navîn de rengê olî bi xwe ve girtiye, lê di rastiyê de ne wisaye û her zêdegaviyek di wî warî de encamên lezgîn bi xwe re tîne. Bo mînak, derbarê Sûriyê de, şirove kriineke olî wê fikarê pêş dixe ku şerê Suneyan li hember îtîlafeke elewî û şiî ye, lê nirxandineke wisa pirsgirêk yan aştî nekirina di navbera malbata Esed û hêza serokkomarê Îraqê Nûrî Malikî nahesibîne.

Herwiha nirxandineke bi wî awayî egera hindê ku Beşar Esed dikare di hizra damezrandina hikûmeteke biçûk a elewî li herêmên çiyayî yên giravan de be. Lê hêzên wefadarî wî li hemû Sûriyê di şer de ne û hêşta çawa ku li Bakur, li Qamişlo hene, li rojhilat, li Der el Zorê, yan li rojava li Derayê jî hene. Hêza hakim dixwaze ku seranserê Sûriyê di bin kontrola xwe de bihêle û naxwaze hikûmeteke elewî yan her alternatîveke din ya milî biceribîne.

Şerekî ne berdewam ê di navbera wefadarên rejîmê li hember şoreşiyan, lê ev neberdewam bûna şer ji ber kêm bûn yan baş bûna çekan ya herdu aliyan nîne, belku zêdetir ji ber vê dijberiyê ye ku wefadarên artêşa Esed, komî ser hev, nêz û xwedî fermandariyeke yekgirtîne û ji aliyê din, hejmareke zêde ya grûbên çekdar ku kêm-zêde hevgirtîne û berdewam yêkitiyên zû guher pêk tên.

Artêşa Sûriyê dikare biryarê bide ku hêzên xwe li ku û kengî li hember dijminan kom bike, lê şiyana kontrol kirina wê nîne.

Ewqas pevçûn bingehên îdeolojiya sîstemên siyasî xirab dike. Partiya Bas a Sûriye bi alternatîva xwe ya Pan Erebî, li rex Komara îslamî ya Îranê li dijî opozosiyonekî şer dike ku bi xwe ji aliyê hikûmetên erebî yên kendavê ve yên weke Erebistana Siûdî yan Qeterê tê piştîvanî kirin.

Hêzên ku li hember hev in, hewil didin mîrata berê dagîr bikin lê tu bernameyeke alternatîv di nava sînorên hikumet-miletan de nînin. Tu kes ji bo Lubnan, Îraq yan Sûriyê şer nake. Ew nûnertiya berjewendiyên herêmî, eşîrkî û di baştirîn rewşê de, ya olî dikin û bi tund û tîjiyê r her tiştê ku dikeve ser rêya wan wêran dikin, bêy ku hewla ji nû ve çêkirina wê bidin.

Dema ku netifaqî û bêserûberî bidawî bibe, bêguman dê nexşeya coxrafiya herêmê jê bê guhertin. Lê ev nexşe dê bişibe çi?

*Çavkanî: Le Monde Diplomatique*
*Ji farsî: Dêrsim Oremar*

# Muze têrî nake, divê berpirsên "5 Nolu"yê jî bêne darezandin

Piştî biryara ku Girtîgeha "5 Nolû" ya ku gelek tade û îşkenceyên dermirovî li girtiyan hatibûn kirin bibe muzê nîqaş û nirxandinên cûda jî derdikevin holê. Dosya ya me ya di derbarê mijarê de vê hefteyê bi dîtin û şiroveyên girtiyên kevn û malbatên kesên ku li wir jiyana xwe ji dest dane didome.



**İrfan Babaoğlu (Girtiyê Doza PKK'ê)**

Em bi salan e tedikoşin ku girtîgeh bibe mûze. Em dibên ku pêdiviyeke civakî ye ku ew der bibe mûzeya bîrê. Ku hukumet hetibe vê astê ji bo kesên ku ew êş kişandine girîng e. Ev tenê ne ji bo me, ji bo nifşên niha jî girîng e. Ji bo vê biryara müzeye gavek êrînî ye. Hêla maxdûr li holê ye û li aliyê din jî berpirsên van kiryaran hene. Divê ew jî bi van re rû bi rû bibin. Ku rewş normal bibe ew kes jî wê bi xwe werin û bibêjin ku bi xwasteka xwe ew kirin nekirine û li ser fermana serleşkeran kirine.

**Mehdi Zana (Şaredarê Amedê yê Berê)**

Ev biryarek di cîh de ye û divê bê pêşxistin. Bo ku carek din tiştekî bi vî rengî çênebe û bi rêya muzeye tiştên ku li wir qewimîne nîşanî nifşê nû dayîn mînakên xweş in. Divê wê wehşetê, mirovên ku li wir çi kişandine, çi berdêl dane bêne nîşandan û nirxandin. Piraniya van kesan hîn dijîn û divê fikrên wan bêne girtin. Ev ne jî bo sûçdarkirina tiştinan an jî hin kesan e. Tenê ji bo ku nifşên nû ji vê dersekê bigirin girîng e. Fikra mûze di nav yekûnekê de bê dîtin baştir e. Gaveke di cîh de ye û ew biryar bi tekoşînekê hate standin. Hinek jî girêdayî xweyîbûna pirsgirika kurd e û gavek êrînî ye.

Di muzeyê de divê hûcre di cîhê xwe de cîh bigre. Jiyan û navên kesên ku di wir de cîh girtinejî lazime hebin. Dibe ku heykelên ku îşkenceyê nîşan dide hebe, bo ku tiştên li wir qewimînî bêne famkirin. Heke muzê vebe ez dixwazim ku lê bigerim. Lê hinekê hestiyar im. Dema ku hevalên xwe yên berê dibinim ez kelegirî dibim. Ji ber ku di nava wan da yê mezin ez bûm her tişt bo min dibû kul.

**Selim Çürükkaya (Girtiyê Doza PKK'ê)**

Muze gavek girîng e, ji ber ku tiştên ku li wir qewimî bandorek mezin li gelê kurd kirî ye. Tiştên ku hatî jiyandin ne pêkan e ku bê ji bîrkirin. Divê bi vê mûzê her tişt bê îfşa kirin. Ku Girtîgeha Diyarbekirê wek avahiyek vala bê çêkirin tû menaya wê nabe. Divê di serî de pirtûkên ku li ser girtîgehê hatine nivîsandin, nivîsên di rojnameyan de cîh girtîne, fîlmên li ser girtîgehê hatine kişandin cîh bigirin di müzeye de. Wekî din divê di derbarê işkencekaran de jî agahî hebin.

**Paşa Uzun (Girtiyê Doza DDKD)**

Di girtîgehê de bi zorê marş û dirûşm bi me didan gotin. Sir û sawa girtîgehê di wan dirûşman de weşartî ye. Kesên di girtîgehê de bi lêdanê radizan û bi lêdanê radibûn. Wek gotina Esat Oktay girtîgeh cîhê "vegûherînê" bû. Plana xilaskirina kurdan di girtîgehê de gîhîşt lûtkeya herî bilind. Ji bo wê bû sembol. Divê em li van sembolan xwedî derkevin ji ber ku rihê netewî bi rêya van sembolan çêdibe. Dewlet hîn jî ji siyaseta înkarê derneketî ye. Divê muze ne di xizmeta hin kesan de, di xizmeta gelê kurd de be. Ku tenê xizmeta hin kesan de be ez naxwazim ku bibe muze.

**Cemşid Bilek (Parêzerê wê demê)**

Tiştên ku li wir pêk hatin kesên ku li wir hatine girtin dizanin. Em parêzer hetanî ji hevdîtinan derdiketin ji dirûşman serê me diwerimî. Dû re em hîn bûn ku her kes mecbûrbûye ku 60 heb marşa ji ber bike. Hin girtiyan bi tirkî nizanibû lê ji wan re digotin gere hetanî sibê hûn "marşa İstîklalê" ji ber bikin.


Mehdi Zana


İrfan Babaoğlu

Wek parêzer dema em diçûn ji dengê marşa me bi rehetî nedikarî ku em bi girtiyan re hevdîtinê bikin, me hevdîtin di bin çavdêriye leşkeran de pêk dianî. Me nedikarî ku em her pirsê ji wan bikin û wan jî nedikarî ku her bersivê bidin. Bo mînak; hevalekî min di hundir de bû. Mehmet Can û yek jî Nedim Seçkin bû. Ku min çend caran gazî wan dikir, dihatin ku di nava xwêdanê de ne. Carekê gotin pir gazî me neke. Min wê demê famnekir. Lê pişt re ez tê gihîştim ku gazîkirina parêzeran jî dibe sedema lêdan û îşkenceyê.

**Xizmên mexdûran diaxivin**

**Altan Tan- Parlementer (Bavê wî Bedii Tan ji îşkenceyan mir)**

Hasasiyata hemû kurdan ev e ku ew der bibe muzeya mirovahiyê. Çi bû, çi hat kirin dibê bê zanîn. Divê nifşên ku wê bên jî vana bizanibin. Bo ku neyê ji bîrkirin divê ew der di cihê xwe de bimînin û bêne nîşandan. Ku bîra civakek bê jêbirin, pêşeroja wê jî namîne. Divê kesên ku berpirsên wan tadeyan in jî bi kirinên xwe re rû bi rû bên. Komîsyona Lêkolînên Rastiyan divê bê demezirandin. Em weke ku ti tişt nebûye nikarin herin bigîhijîn pêşerojê. Divê di serî de hukumet xwedî nîrînek bi vî rengî nêzikî meseleyê bibe.

**Cemile Büyükkaya (Hevsera Necmettin Büyükkaya)**

Helbet ez dixwazim ew der bibe mûze. Demekê digotin wê ew der bibe dibistan lê gere bibe mûze û her kes here wir bibîne. Bi vê şiklê her kes hîne bibe ku li wir çi qewimî ye. Divê berdêla tiştên ku hatî serê me hebe. Qet nebe bi vî rengî em dilrehetiyekê bibînin. Divê herkes bi berpirsiyariyên xwe re û tiştên ku hatine serê xwe re rû bi rû bê. Min bawer nedikir ku wê ew der bibe mûze. Piraniya hevalan jî tekoşîna wê didin. Ya herî girîng divê cilên kesên ku li wir mane cîh bigirin. Çîrokên wan li wir bêne bi cîhkirin. Heke ku bibe mûze ezê herim û lê bigerim. Her çiqas bi dîtina wir ez careke din bi êşên xwe re bêm ba hev jî ezê biçim û bibinim.

# Çarşiya Şewitî careke din dişewite

O. F. Baran

Çarşiya herî kevn a bajarê Amedê li ber sikratê ye. Li gor gotin û gilî û gazincên esnafên çarşiyê piştî ku mixazeyên mezin li bajêr vebûne kesadî li ser kesadiyê hatiye ketiye Çarşiya Şewitî û esnafên çarşiyê êdî nema dikarin heqên kirayên xwe jî derxînin. Xwediyê dikanan yên ku wextekê li ser edet û ticareta bav û kalan dikanên xwe sibê zû vedikirin û bi şev jî dereng digirtin, di van salên vê dawiyê de ji ber ku kar tune tiştek tune êdî dikanên xwe sibê dereng vedikin û bi şev jî zû digirin. 500 heb dikanên di çarşiyê de her çiqas sol û cil û berg, xişir û xalîçe, qir û qafên bi her malê lazim in û tiştên wekî din li derekê peyda nabin difroşin jî mixazeyên mezin pişt li wan dikanên çarşiyê şikandine. Ne tenê mixazeyên mezin, şerê ku çend sal in li Sûriyeyê dewam dike jî di ber re derbeke mezin li kirîn-firotina esnafan xistiye. Ji ber ku derî hatine girtin û li ser rêyên qaçax jî talûkeya mirinê heye esnaf wekî berê nikarin hûrmûrên xwe erzan bikirin û bifiroşin. Di serî de çay û titûn, gelek tişt di nava salekê du qatî biha bûne û pariyekî jî ji ber vê mişteriyên heyî jî ji ser çarşiyê veçerixîne. Bi çavên esnafên çarşiyê xweş xuya ye ku mixazeyên mezin ên ku ji her tiştî pir dikirin û tiştan erzan bi dest dixin û bi kampanyayan bal û gavên gel ber bi xwe kaş dikin kêf û qezanca esnafan ji dest esnafan girtine. Esnafên ku mixazeyên mezin gîsk, dikanên xwe jî li ber wan mixazeyan nîsk dihesibînin li bendê ne ku şaredarî yan berpirsiyarên din destekî biavêjine çarşiyê û da ku çarşiya dîrokî careke din ji neçariyê bi temamî neşewite ew tev bixebitin, projeyên piştgiriyê çêbikin.

**Navê çarşiyê**

Çarşiya Şewitî ya ku tam di nava sûran de ye di wexta xwe de li herêmê navenda herî mezin a kirîn-firotinê bûye. Çarşî çi wext bûye çarşî, dîroka çarşiyê digihîne kê û çi, tu kes li ser vê tiştekî nizane lê tê zanîn ku çarşî navê xwe yê şewitî ji şewata mezin a sala 1914an distîne. Di meha Tebaxê de, nîvê şevê agir bi Bazara Genimî dikeve û ji wir di ser Mizgefta Mezin re heta Çarşiya Melek Ehmed Paşa, Xana Borsayê û Çarşiya Çilingdaran diçe. Li gor hin çavkaniyan, di vê şewata mezin de 1200 dikanên li çarşiyê û çend xanên li dorê bi temamî şewitîne û piştî Şerê Cîhanê yê Yekem çarşî ji nû ve ava bûye û heta îro jî li ser şiklê xwe yî ewil hatiye. Dîsa li gor hin çavkaniyan çarşî di şewata mezin de bi temamî neşewitiye, agirê ku bi hin beşên çarşiyê neketiye hiştiye ku restorasyonên biçûk ne tê de dikanên manî giş orijînaliteya xwe eynî wekî berê biparêzin.

**Feqîr û fotoyên çarşiyê**

Hêvî û omdiyên Çarşiya Şewitî heta par jî feqîrên bajêr bûne lê ji ber ku ew jî êdî tam qulibîne ser mixazeyên mezin wekî berê ne dil û gurçikên esnafên çarşiyê ne. Piştî ku garaja dolmişên navçeyan ji şûna berê hetiye rakirin û ji çarşiyê dûr ketiye însanên ku ji gund û navçeyan dihatine çarşiyê jî nema hatine çarşiyê. Çûyin û hatin ewqas kêm bûye ku di van salên dawiyê de demekê kêfa esnafan bi turîstan û yên ku di stûyên wan de Nikon û Canon diketine çarşiyê xweş bûye lê piştî çend hewldanên ji bo firotina tiştekî esnafan baş fehm kirine ku ewên ku tên ne ji bo kirîna tiştekî tenê ji bo fotoyan biavêjin ser Facebook, Twitter,û Instigramê tên. Ji bo vê yekê û van kesan esnaf her çiqas dengê xwe nakin jî bi çavên xwe aciziya xwe didin ser awirên xwe.

> **Berê kar û pîşeyên dîrokî li çarşiyê dihatin kirin. Lê niha çarşî teslîmî mexazeyan bûye.**

**Yanik Çarşi û kenê Çarşiya Şewitî**

Çarşiya Şewitî ya ku tam sed sal in li ser şewata mezin navê xwe Çarşiya Şewitî ye û di devê gel de wer wisa maye, di hin metnên herêmî de li şûna navê xwe Sipahi Pazariyê bi tirkî bûye ''Yanık Çarşı'' lê heta niha ne ji devê esnafên çarşiyê ne jî ji devê gel tiştekî wisa derneketiye. Li ser pirsan jî esnafên çarşiyê bi giştî wiha dibêjin: ''Çarşiya Şewitî bi her zimanî Çarşiya Şewitî ye, Yanık Çarşi çi ye îcar, ê me qurişek kar û deh quriş zirar, lê ku sed carê din jî bişewite Çarşiya Şewitî nabe Yanık Çarşi tu car!''



Çarşiya şewitî





## Beriya şewatê

Îro esnafên çarşiyê bi temamî Kurd in, bes sed sal berî niha, yanî berî Şerê Cîhanê yê Yekem û berî şewata mezin di vê çarşiya kevn de ermenî, suryanî, tirk û Kurd tev esnaf bûne. Pîresnafên çarşiyê yên ku di zaroktiya xwe de şagirtên hosteyên ermenî û suryanî bûne îro diyar dikin ku pir bêriya wan rojan û hosteyan dikin. Welatiyên çarşiyê yên ku ji zêr û zîvan fehm dikin, yên ku sobe, misîn, zîn û kurtanan çêdikin yek bi yek wek ku qet nehatibin vê çarşiyê ji çarşiyê bar dikin. Sin'etên ku li çarşiyê îcra dibûn yek bi yek bê xwedî, bê hoste, bê şagirt dimînin. Bi gotinên wan welatiyên çarşiyê be, teknolojî û şerên ku mala gelek tiştan xerab kirine pergala çarşiyê jî bela wela kirine: Him hoste wenda bûne, him ermenî û suryanî.

# Xwendin û nivîsandina kurdî li asteke qels e

Rawîn Stêrk



Wêşangeriya kurdî tevî derfetên ku piştî salên 2000'an derketin û qedexeyên li ser wêşanê sist bûn, li cîhekî ne li gor daxwazan e. Piştî qedexeyên li ser kurdî hatin rakirin, hejmara wêşanxaneyan zêdetir bû û çavlirê bû ku rewşa wêşanê jî ber bi başiyê vebiçe. di gel ku bi dehan wêşanxane hene lê ji ber ku di nava wan de hevsengiyek nîn e û her wêşanxane tenê bi pirsgirêkên xwe re dikare mijûl bibe. Ji bo vê rewşa wêşangeriya kurdî nagîhîje serkeftina ku tê hêvîkurun.

Wêşanger di dawiya dawî de ji sazî û rêxistinên kurdan bi gazinc in. Ji ber ku di nava wêşanxaneyan de hevgirtin û hevpariyek jî nîn e, her wêşanxane neçare ku bi serê xwe, pirsgirêkên xwe çareser bike. Dosya ya me ya rewşa weşangeriya kurdî vê hefte bi wêşanxaneya Pêrî berdewam e. Edîtor û xwediyê wêşanxaneyê Niyazi Armutlu pirsên me bersivandin. Li gor wî pirsgirêka mezin kêmasiya hevgirtinê ye.

***Wêşangeriya kurdî, tevî ku hêjmara wêşanxaneyan zêdetir bûye û hin derfet ji berê baştir in niha di çi halî de ye?***

Di demeke wiha de ku baldariya li pirtûkan evçend kêm bûye û muhafazakarî evçend berz bûye, bêguman zêdebûna weşanxaneyan cihê dilxweşiyê ye. Lê wek sektorên din payanbûyîna weşanxaneyan, karê weşanxaneyên biçûk zehmettir dike. Ez dikarim bêjim ku ev rewş bêtir weşanxaneyên ku di derbarê kurd û Kurdistaniyan de weşanê dikin dixe nava astengiyên aborî.




***Xwendina pirtûkên kurdî li çi astê ye? Firotina pirtûkan têrî xwe finansebûna wêşanxaneyan dike an na? Di warê belavkirin û bazarê de pirsgirêkên sereke yên ku wêşanxaneyên kurdî pê re rû bi rû ne çi ne? Xwînêrên kurd zêdetir çi dixwînin? (Wêje, felsefe, dîrok, civaknasî, psîkolojî hwd.)***

Ji ber parçebûna çandî û polîtîkî ya kurdan û ji ber ku kurdî nebûye zimanê perwerdahiyê, bêguman ev yek bandoreke neyênî li frotina pirtûkên kurdî dike. Asta geşedana xwendin û nivîsandina kurdî ji asta geşedana tekoşîna siyasî ya kurdan pir qelstir e. Di van salên dawî de, her çiqas li ser hînbûna kurdî baldarî zêde bûbe jî, em dibinin ku vê yekê zêde bandor li rêjeya xwendina kurdî nekiriye. Ku em bi vê rîwangeyê lê temaşe bikin ez dikarim bêjim em di warê fînansekirina xwe de zehmetiyan dikşînin û em nikarin projeyên cûda pêk bînin. Ji bilî van, di babeta danasîn û belavkirina pirtûkan de pirsgirêkên me yên mezin hene. Bi taybetî şirketên li gor dilen xwe belavkariyê dikin, weşanxaneyan asteng dikin. Li gel em bi weşanxane û payanên tirkan re reqberiyeke nehevseng dikin jî, ji bêçarî em kare xwe yê belavkirinê dîsa bi wan çareser dikin. Ji parçeyên din ên Kurdistanê û bi taybetî li Başûr ji me re dosye nayên û ev jî kêmasiyeke me ya din e. Girseya me girseyeke xwezan e û li gel pirtûkên lêkolînî yên di derbarê dîroka Kurdistan, her wiha cûreyên wek; roman, çîrok û bîranîne bêtir dixwîne.

***Sazî û partiyên kurdan, şaredarî û dezgehên din û nêzikahiya wan a li hemberî wêşangeriya kurdî çawa ye?***

Em nikarin bejin ku sazî û dezgehên kurd piştgiriya weşanxaneyên kurd dikin. Lê ger em qala hevrasteyeke nava wan bikin em dikarin bêjin têkiliyek heye. Ji bilî vê, heta îro me helwesteke alîkariyê nedîtiye. Berovajî helwesteke reqber û reşkirinê heye. Bi kurtasî ez bêjim; xebateke ku wê bikaribe vê rewşê biguherîne ne xuya ye.



***Di navbera wêşanxaneyan de têkiliyek heye, li hemberî pirsgirêkan mildayînek hevpar heye?***

Wek Weşanên Perî em dixwazin ku li ser hîmên hevgirtin û dostaniyê bi nivîskarên xwe re bikevin têkiliyê. Çimku hemî xebatên ku sûdê li doza kurd û Kurdistanê dikin ji bo me giranbûha ne. Wek weşanxane em dibêjin pêwîst e xebatên bi vî rengî bêne mezinkirin û destekkirin. Ji bilî vê, em hewl didin ku pirsgirêkên navbera xwe û nivîskarên xwe bi rîwangeyeke hevpar çareser bikin. Em bi weşanên xwe hewl didin ku di nav Kurdistaniyan de hevgirtineke çandî û polîtîk pêk bê.

***Têkiliyên wêşanxane û nivîskarên wan bi taybetî di warê aborî de di çi rewşê de ye?***

Em tene dikarin qala pirsgirêkên weşanxaneyên serxwebûnxwaz û li derî bîrdoziya fermî weşanê dikin, bikin. Her çiqas em di pêvajoyeke ku wek pêvajoya çareseriyê tê binavkirin de bin jî, pêşbînî û rîwangeyên şoven ên civakî û heya êrîşên nîjadperest bi awayekî bandorê li me jî dikin. Di nav van şert û mercan de divê weşanxaneyên kurd bi hev re tevbigerin û ne bi reqberî lê bi helwesteke hevxurtkirinê tevbigerin. Ev pir grîng e. Em bawer in bi vê rêbazê emê bikaribin pirsgirêkên xwe yên aborî jî çareser bikin. Di serî de divê, di nav weşanxaneyên kurd de dezgehîbûyînek bê lidarxistin û toreke belavkariyê ya ku hemî Kurdistanê dihundurîne bê çêkirin. Divê bi rêya weşanan, di navbera Rojhilat, Rojava, Başûr û Bakurê Kurdistanê de pireke hevpar ya çandî bê avakirin. Ez bawer dikim, carcaran çalakiyên hevcivînê bêne lidarxistin wê ev yek jî rê li ber gihandina pirtûkan a li xwendevanan veke.

***Wêşanxaneyên tirkan jî dest bi wêşana kurdî kirine. Hun vê çawa dinirxînin û bo wêşanxaneyên kurdî çi giringiya wê heye?***

Em vê rewşê, bêtir wek helwesta bidestxistina rantê û asîmîlekirina kurdan dinirxînin. Her wiha em bawer dikin ku ew di mijara frotina pirtûkan de, di nav xwendevanên kurd de jî wiha tê qebûlkirin. Bi taybetî em xebatên Cemaeta Gülen xeternak dibînin. Tu xêrek van ya ku bidin kurdan tune ye, ne pêkan e. Tekane daxwaza wan ew e ku parçebûn û metîngeriya li ser Kurdistanê mayînde bibe.

***Wêşanxaneya we kêngê hat avakirin, li ku wêşanê dike, heya niha çend pirtûk çap bûne?***

Weşanên Pêrî wek berdewamiya Weşanên Med (1992) û Weşanên Nûjen(1995), di sala 1997'an de ji aliyê Ahmet Önal ve li Stenbolê hate damezrandin. Di derbarê nêzîkî 300 pirtûkên ku 100 ji wan bi kurdî ne de doz hatine vekirin. Damezrînerê me Ahmet Önal bi cezayê pere û zindanê hate cezakirin. Li gel hemû gef û pêkutiyan jî wêşanxaneya me heta îro hat. Em ji dost û xwînêrên xwe daxwaza piştgiriyê dikin.

# Êlih êdî bajarê jinan e jî!

Ji ber ku li Tirkiye qad û derfetên ku tenê jin li gor daxwazên xwe bikaribin bixebitin, şa bibin û lê rûn in kêm in, cîh û warên ku bi vê minasebetê vedibin rastî eleqeyek balkêş tên. Li Êlihê jî hêwaneke bîlardoyê vebû û tenê wê jin bikaribin werinê û lê rûnin û li wir bîlardo bilîzin.

Li Êlihê ku bi salan bi xwekuştinên jinan di rojevê de cîh digirt êdî rewş û reng diguhire. Jin êdî dikarin li kolanên bajêr bi kêfa xwe bigerin, li cihên kêfê rûnin û şa bibin. Herwiha li bajer bo jinan hêwaneke bîlardoyê hat vekirin. Jinên ku tên hêwanê bi lîstina bîlardo, tenîs û tavlayê bêhna xwe vedikin.

Antrenorê bîlardoyê Ercan Tatsız ji bo ku jin daxîlê jiyana civakî bibin, hêwaneke bîlardoyê ji bo jinan tenê vekir û hêwan di demeke kin de rastî eleqeyeke balkêş tê. Ji ber ku bajar bi salan wek cihê xwekujiya jinan dihat naskirin, êdî jin û şêniyê bajêr dixwazin ku vê îmajê biguhirînin. Di vê çarçoveyê de jî ji aliyê şaredarî û bazirganan ve xebatên bo vê mijarê têne kirin.

Êlih ku bi riya neftê ji gundeki biçûk zivirî bajarekî şên, hîn jî roj bi roj diguhêre, rengîntir dibe û jinên bajêr jî hînî vê guherînê dibin, ew jî li gor wê pêş dikevin.

L i bajêr gelek cihên çand û hinerê hene û êdî warên tenê bo jinan jî hene. Jinên ku tên hêwanê bi lîstikên bîlardo, tenîs û tavlayê bêhna xwe vedikin. Hem jinên ku têne vir û hem jî avakêr ji rewşê kêfxweş in.



**Êlih... bajarê ku di salên 90'î de bi xwekuştinên jinan ji rojevê dernediket niha bi rengîniya jinan û cîh û warên ku ji bo jinan têne vekirin balê dikşîne.**

Antrenor Tatsız li Taxa Bahçelîevlerê hêwaneke bîlardoyê ya du qatî ava kir û tenê jin dikarin bikevin qata duyemîn a hêwana bîlardoyê. Jinên ku tên hêwana bîlardoyê derfet dibînin ku gelek aktîveteyên werzîşê bikin. Tatsiz diyar kir ku li Êlihê piraniya jinan mehkûmê malê ne û zehf dernakevin derve û got ku bi pêvajoya çareseriyê di jiyana civakî de jî guherîn çêbûn.

Tatsiz da zanîn jinên ku tên hêwanê tenê bîlardo naleyizin û eşkere kir ku ew hewl didin ku li vir konsepteke ku aktîvîteyên werzîşê yên wekî bîlardo, tenîs û tavlayê jî bêne organîzekirin. Min wek antrenorê bîlardoyê bi awayekî dilkirî ev kar kir.

Büşra Karaer jî ragihand ji ber ku li Êlihê hêwaneke bîlardoyê ya ku bi tenê jin dikarin biçinê hat çêkirin, ew kêfxweş in û wiha axivî: "Em spasiya wan kesan dikin ku ji bo Êlihê ev hêwana bîlardoyê ya ku sergirtî û servekirî her kes dikare biçê, çêkirin."

Fatma Tanrikulu jî bal kişand li ser kêmasiya cihên civakî yên ku jin bikaribin biçin wir û got ku ew dê êdî wek jinên Êlihî bikaribin beşdarî faliyetên werzîşî bibin.

# Paletiya jinan ya germa havînê

Li Gevaşa (Kawaş) navçeya Wanê jin sebzeyên ji baxçeyan berhev dikin û ji bo firotinê dişînin bajêr.

Li Gevaşê bi piştgiriyên ku van salên dawîn tên dayîn di eraziyên bi hezaran dolimî de sebze tên çandin û bi vî awayî piştgiriyeke mezin didin aboriya navçeyê. Cotkar di demsala biharê de sebzeyên xwe diçînin û ji ber ku jin hesastir in û karê xwe bi baldariyeke mezin dikin palehiya sebzeyan didin jin û keçên xama.

Jinên ku di heyama palehiyê de sebzeyan berhev dikin, hem ji bo ku piştgiriyê bidin aboriya malbatê hem jî ji bo ku bikarin hewceyiyên xwe pêk bînin, di zeviyan de dixebitin.

Celaleddîn Îpekten ku îsal di zeviyeke bi qasî 100 donimî de çandiniya sebzeyan dike daxuyaniyek da û diyar kir ku jinan hemû hilberîna sebzeyan kir. Îpekten got ku jinan toximên sebzeyan çandin û heta palehiya wan hemû karên zeviyê wan kir.

Îpekten destnîşan kir ku jin di zeviyan de baldartir û hesastir dixebitin û zehf zirarê nadin sebzeyan û ev yek jî xêr û bera sebzeyan zêde dike. Îpekten axaftina xwe wiha berdewam kir: "Ez bi salan e li navçeyê çandiniya sebzeyan dikim. Ji ber ku jin li gor mêran di çandina zeviyê, xwedîkirina sebzeyan û palehiya sebzeyan de hesastir in, ez her dem bi jinan re dixebitim. "

Ji jinên ku di zeviyan de sebze berhev dikin Fatma Tanış jî got ku ew bi salan e ji bo ku piştgiriyê bide aboriya malbatê di zeviyan de dixebite û kar hinekî zehmet e lê belê xweş e.

Taniş got ku em di maweya çandina sebzeyan heta berhevkirina wan karê xwe gelekî baş dikin û wiha axivî: "Sebzeyên ku bi destê jinan tên çandin, xêr û bera zeviyê zêde dike. Lewra em li gor mêran karê xwe baldartir dikin. Bi wî pereyê ku dikeve destê me jî hem em hewceyiyên xwe pêk tînin, hem jî piştgiriyê didin aboriya malbatê."









# Di muzîkê de tehm û rengên kurdî divê

Azad Xanzade

Sebahattin Yıldız ku ji zaroktiya xwe ve ye di nava mûzîkê de ye hest û ramanên xwe yên di derbarê xebat û jiyana xwe de bi me re perve kir. Yıldız dixwaze muzîka kurdî di pêşerojê de wek kurdan azad be û zêdetir piştgiriya mûzîkjenan bê kirin. Yıldız hetanî niha bi navê "Ez Dengbêjim", "Vegere" û "Ji Kaniya Stranan" sê albûm derxistine û dixwaze xebatên xwe berdewam bike. Yıldız herwiha bi navê "Xoce" jî tê zanîn

***Tu dikarî hinek xwe bi me bidî nasîn, behsa rêwîtiya xwe ya mûzîkê bikî?***

Ez li gundê Siqawiyê (Mercimekkale) ku girêdayî Mûşê ye di 1962'yan de hatime dinê. Piştî erdheja Vartoyê me mal barkir û em li navçeya Bismilê bi cî bûn. Dibistana seretayî, ya navîn û lîse min li wir qedand in. Ji 1983'an de ji Zanîngeha 100.Yil'ê de jî ji beşa mamostetiyê mezûn bûm. Bi rastî zaroktiya min jî bi hezkirina muzîkê bihurî. Ji xwe li mala me her tim kasetên dengbêjan dihat gohdarkirin. Piştî 12' Êlonê her tişt rawestîya. Di sala 1983'yan de min dest bi mamostatîyê kir û heman demê de jî bi pêşniyara hevalek muzîkjen me grûbek ava kir û me dest bi dawetan kir. Lê dîsa min dev ji kurdî berneda û her bi stranên kurdî me dawet şên dikim.

***Tu hem mamsote yî û hem jî bi muzîkê re mijûl dibî, ev ji bo te çi astengiyan derdixe?***

Helbet tirs hebû ez mamoste bûm û hûn jî zanin ku wan deman bi kurdî stranbêjî ne hêsan bû. Ji min re digotin: "Yaw tu mamostayî wê te ji kar bavêjin."Lê ez ji ya xwe nedihatim xwarê. Min digot çi di be bila bibe ez dev ji kurdî bernadim û tirkî nabêjim. Heta ku kurdî serbest ne bû min bi tirkî stranan negot. Gelek astengî derketin û biser dawetan da girtin lê bi saya gel û hevalên muzîkjen ez xilas dibûm. Gava ku bi ser dawetan da digirtin hevalên min yên muzîkjen dest bi stranên tirkî dikirin min jî xwe dida alî. Yek a din jî ji ber ku ez mamoste bûm min nikarî bû albûm derxista heta demek dereng. Esil bersiva pirsê jî mamostetî û muzîkjenî bihevre ne hêsan bû. Lê mamostetî debara min muzîkjenî jî hesta min ya jiyanê bû...

**Hem bi kurdî û hem bi tirkî stran gotin dibe sedema çi derfet û tengasiyan?**

Bi rastî ez ji muzîkê gelek hezdikim. Zimanê min ji bo min sereke ye. Lê stranên tirkî yên gelêrî jî yên hestbar jî hez dikim û distrêm, tevlê ûda xwe. Gava ez stranên xwe dibêjim astengî û derfetê wî napîvim, ji dilêmin çi tê ez wî distrêm. Dîsa jî dubare dikim di muzîkê de sereke zimanê min e. Ji ber ku bi kurdî ez xwe bêtir îfade dikim, hestên xwe...



***Çavkaniyên mûzîka te çine? Tu kîjan muzîsyenan ji xwe re pêşenk dibînî?***

Min di serî de jî got li mala me dengê dengbêjan qet kêm ne bû. Gava ez hê zarok bûm Şakiro yê dengbêj ku şahê dengbêjan e, çend caran hat mala me û min bi zindî jî li wî guhdar kirî ye, ji ber ku bavê wî û bavê min hev nasdikirin. Lê pêşenga muzîka mim di destpêkê de Şivan bû di dawîyê de Aram Dîkran, Mihimed Şêxo û Tehsîn Taha li ser min gelek tesîr hîştin. Mihimed Arif, Hesenê Cizirî, Kawîs Axa û stranbêjên Radyo ya Yêrewanê jî min guhdar kirine û min ji tehm û ekla muzîka wan jî sûd wergirtîye.

***Tu tarza xwe ya muzîkê çawa binav dikî û çima?***

Piştî salên 90'î gava ku muzîka kurdî serbest bû gelek kesan û koman albûm çêkirin bi navê muzîka kurdî. Her çiqas bi navê muzîka kurdî muzîk çêkirin jî hestên kurdî bi min gelek kêm bû. Vê ya meriv dikarê bike du beş; Yek muzîka kurdî, ku bi gotin û awazên xwe kurdî. Du, muzîka bi kurdî; tenê peyv û gotin bi kurdî lê awaz û hestên wê ne bi kurdî. Hest û awaz di bin tesîra muzîkên neteweyên din de. Bi rastî ku ez bêjim muzîka min ev e, belkî ne objektîfbim. Lê ez dixwazim bêjim ku ez muzîk a kurdî ya resen ya klasîk çêdikim an jî hewldidim ji bo wê. Cihêtî ya muzîka min yek jî ev e ku hûn jî zanin li Bakûrê Kurdistanê hema hema hemû muzîkjen û hunermend tembûr an jî amûrên rojavayî bi kar tînin. Helbet ev ne kêmasî û xeletî ye. Ez jî bi ûdê hestên xwe der dikim.

***Tu rewşa niha ya muzîka kurdî çawa dibînî?***

Gava em li seranserê Kurdistanê dinêrin li ber muzîkên bi qelîte yên gelek xirab jî çê dibin. Hin muzîkjen û hunermendên me muzîka rojava û ya kurdî gelek baş sentez kirine û baş çê dikin. Ji xwe gava ku tu li van hunermendan baş binêrî bingeha wan ya muzîka kurdî xurt e û çavkaniya wan jî muzîka resen ya kurdî ye. Lê hinek nifşên nû ji denbêjiyê û ji muzîka klsaîk bêhay in. Gava bi navê muzîka kurdî muzîkê çêdikin mirov tu hestên kurdî tê de nabîne. Evana di bin bandora dagirkerên xwe de mane û ti hest û bêhna kurdî qet jê nayê. Dezgeh û sazîyên kurdan gere vêya baş binirxînin. Lewre yek nîşana netewan jî muzîk e, cihêbûna hestên neteweyî ye.

***Bi van bûyerên dawî re tu rewşa Kurdistanê çawa dibînî?***

Bi rastî vê gavê li pêşiya gelê kurd derfetên gelek baş hene, lê dijminên gelê kurd pir in. Ji bo pêşîgirtina serxwebûna Kurdistanê di nav hwldaneke bêhempa de ne. Ew jî zanin ku serxwebûn û azadiya Kurdistanê hatiye asteke bilind. Û heta ji destê wan tê dixwazin rê li ber bigrin. Ji bo wê gelek siyasetên qirêj bikartînên. Li hemû cîhanê ji du sedî zêdetir dewlet hene. Nifûsa gelek dewletan ji milyonekî kêmtir e. kurd li ser xaka xwe ji çil milyonî zêdetir in. Wek neteweyên din kurd jî xwedî mafê çarenûsa xwe ne. Lê ji vê re yekitî divê. Yekitî, yekitî û yekitî. Îro bi ya min li ber serxebûnê astengiya herî girîng yekitî ye. Lê ew roj ne pir dûr e.

***Piştî "Ez Dengbêjim", "Vegere" û "Ji Kaniya Stranan" di pêşerojê de tu dê çi xebatan bikî?***

Xebat û hewldanên min hene lê derfet rê nadin ku ez projeyên xwe têxim pratîkê. Hûn jî zanin ku dezge û sazîyên kurdan di vê mijarê de lawaz in an jî giringiyê nadin. Û ya din, hunermend gere di xebat û afirandina xwe de azadbin. Di xebatên xwe de serbestbin û hestên wan netewîbin, nekevin bin bandora siyasetên cihê. Gava hunermend bi vî teşeyî tevdigerin xweyî lê dernakevin. Ev jî ji bo hunermendên kurd dibe astengî mixabin.